# BasNûçe
HERDEM RASTÎ

ROJNAME YA HEFTEYÎ YA NÛÇEYÎ • BIHA 2.5 TL

HEJMAR 4 • 16-23 GULAN 2014 • WWW.BASNEWS.COM




Leyla di çil saliya xwe de
➜ 2-3

# Ji kurdan bo Somayê sersaxi





**Em ji bo malbatên ku endamên xwe wenda kirine sersaxî, ji birîndaran re jî şifayê dixwazin**

Em wek tevger û gelê kurd li gel wan in. Gelê kurd û hêzên demokrasiyê dê berpirsyariya xwe bi cih bînin. Bi sedan karkerî jiyana xwe ji dest dan. Ev ne qeza ye, cînayet e. Li Tirkiyeyê ya girîng ne ewlehiya kar e, maliyeta kêm û kar a zêde ye.



**Ez li ser navê xwe û gele Kurdistanê, ji bo we û gele Tirkiye taziyeyên xwe dişînim**

Min karêsata ku li Manisa'yê qewimî bi xemgînî bihîst. Ez ji bo qeza ya ku bû sedema mirina gelek karker û birîndaran ketim xemgîniyek kûr. Ez li ser navê xwe û gele Kurdistanê, ji bo wê û gele Tirkiye taziyeyên xwe dişînim.



**Ez ji bo malbatên wan karkerên ku li Somayê jiyana xwe ji dest dane re sersaxî dixwazin.**

Li gorî ku tê gotin hîn jî di binê erde de gelek karker mane. Derdikeve holê ku tedbîrên ku pêwistî pê he ye nehatine sitandin û gunehkarê vê hene. Em dixwazin hesabê vê yekê ji wan bê pirsîn û qezayeke wiha dûbare nebe.



Ziryabê kurd: Bavê Flamenkoyê
➜ 4-5



Radyo ya dengên teze: Erîwan
➜ 14-15



Kurdên medî hîn jî li Xûresanê dijîn
➜ 12-13

# Berxwedêrek li hemberî qralên Babîlê: Leyla Qasim

Gelek jinên ku ji bo şoreş an jî azadiya rastiyekê, jiyana xwe dane ber jiyîna wê rastiye hene û weke sembolekê êdî ew bûne mîrateya cîhanê, yên mîna Rosa Luxemburg, Emma Goldman, Angela Davis, Olga Benerio û hwd. Û li kurdistanê jî helbet Leyla Qasim ku weke xwedawendekê li hember rejîma Baasê bû mertalek berxwedanê.

Li her çar parçeyên kurdistanê ku di bin desthilatdariya mêtingehên cûda de ne, bûyerin qewimîne ku mirov dibê qey ew ne rast e, hema gotinên mîtolojîk in. Yek ji wan jî Leyla Qasim, ku di bin işkenceyên bê hempa de kenê li rûyê xwe weke nîşaneya serhildêriya kurdistanî kêm nedikir. Ew a ku bi marşa ey reqîp berv bi sêdarê ve çû û kursiyê ku hilkişiya ser bi linge xwe velqitand.



RAWÎN STÊRK

Pêşenga kurd a ku di temenê xweyî ne dirêj de bi gelek elem û kul an re rû bi rû ma, bi sekna xwe ya mînak ne li hember şexsê Saddam Huseyîn kêliyekê ket dudiliyê, ne jî hişt ku lerizînik bi bedena xwe ya di bin celadên işkencekarkeve. Leyla Qasim, li Rojhilat a Navîn yekemin, li cîhanê jî çeremîn girtiya siyasî a ku hatiye îdamkirin û bi vê jî helwesta wê ji bo çar parçeyên kurdistanê semboleke qedir giran e.





**Têkoşîna Leyla Qasim mînakek e di warê nîqaş û şiroveyên dij mêtingehî, dij qolonyalî û her wekî din di warê femînîzmê de jî xwediyê bingeheke têr û tijî ye.**

Têkoşînêriya Leyla Qasim ne bi mijarên polîtîk, bi jidayikbûna wê destpêkir.Ji ber kû di sala 1952'an de li Xeneqîn'ê di malbateke gelek xizan de, wek xwîşka 4 birayan çavê xwe li cîhanê vekirin. Bavê wê Kanî û diya wê Dalaho Qasim bi karên ziraî re mijûl dibûn û ji bo ku ji xizaniya xwe re çareyekê bibinin, di 4 saliya Leyla'yê de goçî Hewlêr'ê kirin. Leyla û birayên wê li nav zeviyên ku lê dixebitîn bi erebî re hev nasîn û bi rê ya dibistanên ereban jî ferî zimanê wan bûn cara ewil. Piştî ku li vir jî nebû, di sala 1958'an de vê carê goçî Bexda'yê kirin. Şert û merc her çibin jî bavê wê dixwest ku Leyla perwerde bibe û xwe bi pêşxe. Ji bo vê jî her derfet, tevî xizaniyê dan ber qîza xwe û wê jî berdêla vê yekê bi her alî anî cih. Leyla Qasim li vir dest bi bêşa civaknasî ya Zanîngeha Bexda'yê kir û di heman demê de bi Yekitî Qotabiyên Kurdistanê (YXK) re ket têkiliyê.

### Haziriya çalakiyek bi deng

Zordariya rejîma Baasê dorpêçiya xwe ya li ser kurda domdikir û Leyla jî li hemberî vê ket rê ya bilindkirina têkoşîna xwe û perwerdahiya xwe ya kesayetî de. Leyla û malbata wê, ji bo ku rejîmê zor dida ku Xaneqîn bête erebkirin goçî Bexda'yê kiribûn lê li vir zordariya ku li hember têbikoşe girantirbû. Li ser vê jî Qasim di demek kin de bu ji pêşengên YXK'yê. Di heman demê de her roj bi dehan ciwanên kurd ji alî rejîmê ve dihatin kuştin û bi hezaran kurd jî dihatin sirgûnkirin. Li ser vê yekê Leyla û hevalên wê ketin nava haziriyên çalakiyek ku li cîhanê deng vede û balê bikêşe ser rewşa ku kurd neçarê têne kirin. Dîsa di heman demê de Qasim biryar debû ku tev li refên peşmergeyan bibe û di 20 saliya xwe de êdî ew şoreşgerekbû û her wiha jinekbû.

Di 1974'an de Baasê li hemberî kurdan şerekî nû û giran da destpêkirin. Qasim û hevalên wê bîrdozbûn ku êdî tiştekî bi deng bê kirin. Û li ser amadekariya çalakiyekê ketin nava hewildanekê û di dawiyê de ji çalakiya şoreşgera Felistinî Leyla Xalîd dan ber xwe û biryar dan ku balafirekê bi destxin. Ji bo Qasim û hevalên wê, bê deng mayîn, xayintîbû û divê tiştek bihata kirin. Mixabin Leyla û 4 hevalên wê di haziriya çalakiyê de, di nîsan a 74'an de hatin girtin û duçarî işkenceyên giran hatin. Celladên rejîmê nema rêbazên îşkenceyê ceribandin û li bedena wê ji goştê bedene berîk çêkirin. Di demeke kurt de jî piştî darazeke ji edeletê dûr, biryara îdamkirinê ji bo wan hate dayîn.

Leyla Qasim hê 22 salî bû... Beriya ku bê îdamkirin di hevdîtina bi diya xwe re Leyla Qasim behsa hevdîtina xwe û Saddam Huseyîn dikir. Derdiket holê ku Saddam Huseyîn ji bo ku ew û hevalên wê ji tekoşîn û şoreşgeriya kurdistanî paş ve vegerin heya ber lingê Leyla'yê çûbû û ji wê poşmanî xwestibû. Leyla yê wiha digot ji diya xwe re, "Dayika delal, nexeyîde, ez nefereke dozê me êdî. Ji bo kurd û Kurdistanê têdikoşim. Doh Saddam û komek bi wî re hatin vir. Di fikra ku ezê bixapim û ji pîvanên xwe tawîzan bidim de bû. Soz da min ku ezê bikaribim di dibistanên herî mezin de bibim mamoste. Lê min ji wî re bersivand û got ez bi qasî ku van bertîlan qebûl nekim bi rûmet im û gelê xwe nafiroşim. Piştî ku min ji wî re got ku min ji bo doza kurd û Kurdistanê mirin daye ber çavan û mirina di vê rê de jî weke rûmeteke pêşwazî kiriye, divê te bidîta ku ew Saddam'ê 'mezin' kete çi halî. Min dît ku ew zivirî belengazekî çawa. Dayê, bi mirina me wê bi hezaran kurd şiyar bibin û wê ala azadiya me daliqe. Piştî ku ez mirim qet xemgîn nebin. Bila ji keziyên min alekê çeken".

Di 28'ê Nisan a 1974'an de dema ku tevî 3 heval û destgirtiyê xwe derketin ber dozger, bi dengekî berz û bilind, deste xwe dirêjî dozger kir û wiha got, "Min bikujin qet ne muhîm e. Dibe ku hun bikaribin bi kuştinê me ji holê rakin. Lê mirina min dê bibe şiyarbûna bi hezaran kurda. Ez serfiras û bextewar im ku ezê ji bo kurdistaneke serbixwe bimirim". Gotinên Qasim li hemberî pêkanînên tund û giran ên Baas'ê, berpirsê rejîmê di nava matmayînekê de hiştin û her wiha ji bo kurdan jî bu pêpelokeke bixwebaweriyê.

**Helwesteke dij mêtingehî**

Leyla Qasim di hişyariyeke wisa debû ku di mijarên ku piştî şerê cîhanê yê yekem li Rojhilata Navîn diqewimin û deq û dolabên ku li ser Kurdistanê têne gerandin, dê tene bi tiştekî bêne rawestandin; helwesteke dij-mêtingehî. Her wiha Qasim bi vê helwesta xwe weke xwedawendekê ku li hemberî qralên babîlan serî rake bu mîhengek ji bo doza kurdistanê.

Di dawiya dawî de Leyla Qasim bi zanebûna xwe ya dij-mêtingehî eynî wek, Luxembûrg, Goldman, Davis û Banerio ji bo şoreşgeriyê li cîhanê bû mînak û li çar parçeyên kurdistanê jî bu qonaxek berxwedanê. Leyla Qasim beriya ku dawî li jiyana wê bê anîn, di dema ku berv bi sêdarê ve meşiya, her serbilind, bixwe bawer û serketîbû, ku bi marşa ey reqîp çû sêdarê. Di heman dema ku ew û çar şoreşgerên kurdistanê hatin daliqandin, li qadî tevî rûkenî û berxwedêriyê ey reqip li qadê bilind dibû.

Bi vî avayî 13 Gulan a 1974'a ji bo berxwedana azadiya Kurdistanê bû asteke din a watedar û îro weke asteke bilind hê jî di berxwedana çar parçeyan de cihê jin a kurd nîşan dide.

Leyla Qasim helbet ji bo kurd û Kurdistanê rêzikek ku bi deste jinê hatiye kolan vekiriye lê ev rêzik îro ji bo hemû jinên cîhanê yên dij mêtingeh û şoreşger tê wateya teoriyek kûr. Li çar parçeyên Kurdistanê di vê rêzikê de jinên wek Bêrîtan, Sarya, Zîlan hwd. jî derbas bûne û ew rêgeh hewceyî li berçavgiritenk nû û hemçaxî ye.

**Peyama Barzanî**

Di vê navberê de Serokê Kurdistana Başûr Mesût Barzanî jî bi minasebeta 40. salvegera bi darvekirina Leyla Qasim bi riya hesaba xwe ya facebook'ê peyamek weşand. Barzanî di peyama xwe de desnîşan kir ku Qasim sembola fedakarî û welatperperiya jinên kurde. Barzanî wiho domkir, "Jiyan û mirina Leyla Qasim ji bo hemû ferdên kurd xwedî ders û mînakan e. Piştî mirina wê bi hezaran dayikên kurd, navê wê li zarokên xwe kirin. Bîranîna wê şehîda qehreman pîroz û abîdewî ye."



Li ser jiyan û têkoşîna Leyla Qasim, gelek şair û dengbêjan jî berhem afirandine û stra ne. Ye ji van Hemîn Mûkryanî ye ku wiha dibe ji bo wê:

Ke tu turay le çawim wek xewî min
Le biskit reştire mangeşewî min
Birû Mecnûn be Leylay xut menaze
Ke nawbangî pitir derkird ewî min
Bizey hatê, witî celadî xiwêrî!
Be keyfî xut petit bawêje estom
Ewe pet niye mîdalî îftixare
Ke bûme qaremanî mîlletî xom.



Leşkerên Baasê Leyla Qasim berv bi girtîgehê ve dibin

Şêrko Bêkes, Tîrêj û gelek helbestvanê E'reb yên mîna Udunîs jî di helbestên xwe de behsa canfîdayiya Leyla Qasimê dikin. Di helbesta xwe ya ku ji bo Leyla Qasim nivîsî de Cîgerxwîn jî wiha dibî:

Leyla keça Mît û Meda
Canê xwe da, di ber me da
Bijîn heçî ku canfida
Xweş bin ji te jar û geda
Leyla çiraxa şevreş e
Wê rû li Kurdan kir geş e
Kuştin bi me Kurdan xweş e
Zordarî êdî nameş e!
Leyla bijî, sed aferîn
Ji bo me bûye ol û dîn
Dîsa li min der hûn birin
Heta cigerê min bûye xwîn!

# Ziryabê kurd: Bavê Flamenkoyê

İRFAN GÜLER



Cara pêşî min ew di qursa Zanîngeha Santiago de Compostela a Zimanê Spanyolî de nas kiribû. Di serdema havînê a kursê de, xwendevanên kursê dê her yek mijarek bibijarta û der barê mijarên xwe de derpêşiyekê pêk bianiya. Min jî wekî mijar, serdema Dewleta Emewî a Endulusê ku wê hingê sê ol û çand (Xiristiyanî, Cihûtî û Misilmanî) digel hev û di nav aştiyê de jiyabûn, bijartibû. Di dema vekolînên min de, her çi qas bajarvaniya ku misilmanan di wê serdemê de ava kiribû bandora xwe xurt danî ser min jî, şoka hîmî bi naskirina wî bi min re çêbû. Hûn ê serboriyeke wî a kurt, di beşa pêşdetir de bixwînin. Wekî hûn ê jî heq bi min re bihêlin, Ew, mirovekî “serasayî” ye ku ne di çîrokên kurt ne jî di romanan de hiltê. Digel van taybetiyên wî ên serasayî, taybetiyeke wî a biçûk û zelane hebû ku ew taybetî bû sedem ku ez li ser mijarê hûr bibim. Ew Kurdek bû, “pîrê dengbêjan” bû ku, ji wê axa ku ez lê hatibûm dinê hatibû sirgûnkirin, di warê ku tê re derbas bûbû de bi şarezayî, zanayî û bi dengê xwe î xoşeman her kes heyranî xwe kiribû û di Girava Îberê de ku ez jî bo demekê lê jiyam de koça dawîn kiribû û ji hêla rayeyên xwedî extiyarî ve wekî bavê Flamenkoyê hatibû qebûlkirin.

Ziryab navê wî yê navoçkî ye. Li gorî hin çavkaniyan, navê çivîkeke reş e (Blackbird, Págaro Negro) ku ji ber rengî gwînê wî (ji ber ku esmer e) û ji ber xweşbûna dengê wî, li gorî hinekan jî, ji ber zelalî û vedengiya dengê wî, bi wateya ava zêrîn (zerab) ev nav lê hatiye kirin. Navê wî î rastîn, Abdul Hasan Alî Îbn Nafî ye. Di sala 789'an de li gundekî Kurdan ê ku bi ser Musilê ve ye, ji dayika xwe re çêdibe. Tayek tenê ê dê û bavê xwe ye. Hemû xwişk û birayên wî piştî ku ji dêya xwe dibin, dimirin. Bavê wî Nafî sermiyanê malbateke nîvhalxweş e. Gava ew hê biçûk e, malbata wî bar dike diçe Bexdayê. Abdul Hasan Alî li vir perwerdeyeke pir baş digire. Ew xwendevanekî pir jîr û jêhatî ye. di biwara zanist û wêjeyê, bi taybetî di biwara cografya û astronomiyê de pir serkeftî ye. Lê serkeftina xwe a hîmî di biwara muzîkê de dide der. Li cem Îsheq, ku sermuzîkkarê qesrê û di heman demê de mezintirîn muzîkkarê wê hingê ye, perwerde dibe. Ew xwendevanê deqîn ê mamosteyê xwe ye.

Rojekê Harun Reşîd, ji Îsheqê ku sermuzîkkarê qesrê ye, dixwaze bila muzîkkarek ku nehatiye naskirin û ji muzîkkarên qesrê cuda ye, bibîne. Sermuzîkkar dibêjiyê, dê ev daxwaz tavilê bê bicîanîn û demeke şûnde xwendevanê xwe î deqîn derdixe pêşberî xalîfe. Ev xwendevan Ziryab e. Ziryab pir bi kelecanî ye. Hay jê heye ku ev dem, yek ji kêliya girîngtirîn a kêliyên jiyana wî ye. Lê belê, bixwebawerbûna wî jî bêkilûkêmasî ye.

Pirsên xelîfe bi hişyarî û di cî de dibersivîne. Gava xelîfe der barê zanîna wî a di biwara muzîkê de pirsê jê dike, ew wiha dibersivîne: “Belê, ez hemû stranên ku gel dizane, dizanim, jê pêvtir jî, beşek stran hene ku ez bi wan dizanim, lê tu kes bi wan nizane, min ew ji bo we veşart ji gel, heke hûn destûrê bidine min ez ê stranên ku we heta niha nebihîstine bibêjim ji we re.

Li ser vê yekê Xelîfe ji wan dixwaze bila Uda mamosteyê wî Îsheq bînin. Gava Ud didin destê Ziryab, Ziryab car dî heqê gotinê hildide û dibêje: “Udeke min heye. Min bi destê xwe ew çêkir. Ez herî baş dikarim bi wê hunera xwe pêşkêş bikim. Ez udeke dîtir naxwazim. Min Uda xwe li ber derî daniye. Destûrê bidin min da ez wê bi kar bînim. Ziryab Uda xwe werdigire û dest bi lêdanê dike. Xelîfe, bandoreke zêde ji stranên ku Ziryab dibêje û muzîka ku derpêş dike, digire, loma jî berê xwe bi Îsheqê sermuzîkkarê qesrê ve dike û dibêjiyê: “Heke min zanibûya te rastî ji min re negotiye, diviya min tu bi ceza bikira ji ber ku te der heqê xurtî û kalîteya wî de agahî nedaye min. A niha, wî bi xwe re bibe û heta dawiya perwerdeya wî baş lê miqate be, ji ber ku gelek pîlanên min hene der heqê wî de.”

Ziryab pir dilxweş e. Yekem azmûna di jiyana xwe de bi serketî derçûbû. Siberojek mezin li pêşî wî bû. Xeyalên wê çêdikirin di serê xwe de. Lê belê dê vê xeyala wî zêde nedomanda. Performansa xurt î mezin ku li pêşberî Xelîfeyî nîşan dabû, ji bo wî di heman demê de bûbû destpêka dawiyê. Mamosteyê wî jî li hemberî vê performansa wî metel mabû. Ev nêzikiya Xelîfe ku bo Ziryab hebû, mamosteyê wî tirsandiye. Rojek şûnde berî ku ders dest pê bike, qewl didin hev ku li mala mamosteyê wî hev bibînin. Ziryab sibehê zû bi dilcoşiyekê şiyar dibe, kincên xwe li xwe dike û berê xwe dide mala mamosteyê xwe. Hay ji surprîza ku li benda wî ye, tune ye. Mamosteyê wî dest bi gotinê dike: “Alî, baş guhê xwe bide min, ev dinya xirîner e û dexesî yek ji kevintirîn nexweşî ye, bi taybetî di navbera wan kesên ku heman hunerê pêk tînin de. Te ez xapandim. Wê gava ku min ji bo pêşveçûna te hewl dida, te geviliyên xwe ên serwer ji min veşart. Te li pêşberî Xelîfe ez nehêja kirim. Dibe ku di demeke kurt de ji şûna xwe a heyî bişiqitim. Lê ez ê rê nedim vê yekê. Heke ev têkiliya hostetî nebûya di navbera me de, çi dibû bila bibûya, berî ku gotineke zêde bikim, min ê tu bikuştayî. Lê ez ê bihêlim ku tu karibî rêyek ji du rêyan ji bo xwe bibijêrî. An tu yê ji vir bi dûr kevî û bi qasî ku ez ê agahî ji te wernegirim dûrtir biçî, ku di vê rewşê de hemû lêçûnên te li ser min e, an jî tu yê li vir bimînî, hêrs û neçêtiya min bikî para xwe û bibî neyarê min, ku di vê rewşê de jî ez ê nehêlim tu bimînî li darê dinê. Tu bi xwe hilbijartina xwe bike.”

Ziryabê xort, ku li hember van gotinan nedizanî ka çi bike, çi bêje, vê gefxwarina mamosteyê xwe bi micidî fam dike. Ji lew re, dizanibû ku mamosteyê wî hêz û bandora xwe hebû ku vê yekê pêk bîne. Di asoyê de siberojeke nû xuya dibû. Navê vê siberojê jî, sirgûn bû. Çûna dûrahiyan. Bêdilê xwe. Bi koteki. Wî dê axa ku lê ji dayika xwe bûbû, tiştên ku lê jiyabû, hemû hezkiriyên xwe,

Wergera ji tirkî: DÎLAWER ZERAQ

xeyalên xwe, hemû li wir bihişta. Lê, ê ku herî zêde li telê wî diket û trajîk bû, tiştekî dî bû. Erê, kesê ku krîza dexesiyê pê girtibû, gefa kuştinê lê xwaribû jî, Kurdek bû. Ji bo Ziryab êdî wexta çûnê ye. Sibehê zû, hê ku bajar bi xewê ker e, tev li karwanê bazirganiyê dibe û berê xwe dide rojavayê. Ber bi siberojeke nediyar. Hê nozdeh salî ye. Cara dawî li Dîcleyê dinêre. Westgeha yekem Qahîre ye. Ziryab, her çi qas, di demeke kurt de, bi gotina stranên xwe ên cuda, bi pêagahiya xwe a zanîna giştî û bi kesayetiya xwe a nefsbiçûk, dibe hezkirê xelkê Qahîreyê jî, jiyana di warê xerîbiyê de ne hêsan e ji bo wî. Ew bi dengê xwe nanê xwe dixwe. Her wekî dengbêjan. Di festîvalan, di malan de li amûrê dixe û stranan dibêje. Li tu ciyî akincî namîne. Hema bêje li hemû bajarên Afrîkaya Bakur dimîne. Dixwaze bextê xwe li Tunusê û serbajarê wê ê wê demê û pêşvetirîn navenda Afrîkaya Bakur, li Kîrvanê, bigere.

Gava ku li wir e, der heqê Mîrê Cordoba de tiştên erênî dibihîse. Eleqeya wî bo hunerê û navdariya wî a der heqê parastina hunermendan de, li ser zimanan e. Radibe nameyek dinivîse jê re. Daxwaza xwe a derpêşkirina muzîka xwe di qesra wî de dibêje. Bi bazirganekî re name dişîne bo wî. Der barê bersiv û encama erênî de zêde hêviya wî tune ye. Lê belê, piştî bi mehan, nameya ku dê jiyana wî bi temamî biguherîne û li serê mohra Mîrê Cordobayê heye, dikeve destê wî. Bi zehmetî name vedike. Mîrê Cordobayê di nameya xwe de dibêje, ez der barê hunera te a bêhempa de xwedî agahî me, ne hewce ye gotinên zêde bên kirin û ez te vexwendî qesrê dikim, tu yê di qesrê de werî peywirdarkirin û dê hemû hewcetiyên te bên qedandin, loma jî divê demek berî demekê bi rê bikevî. Ziryab, bêyî ku li ser bihizire, tavilê bersiva nameyê dide û her du jinên xwe, çar zarokên xwe û Uda xwe hildigire û dide rê. Piştî rêwîtiyeke dûrûdirêj û bi xetere, ji derava Cebelîtariq dibihure û di sala 822'yan de digihîje Algecirasê (Cadiz). Gava digihîje girava Îberê 33 salî ye.

Sermuzîkkarê qesrê Abdul Nasr Mansur ku ji hêla Mîr I.Hakem ve tê şandin, pêrgîniya Ziryab dike. Wekî ku dibêjin, hespê mirinê tim siwar e, bi gihîştina xwe re jî agahiya mirina Mîr hildide. Wê kêliyê difikire ku her tişt winda kiriye. Nizane ka çi bike. Bes rêyek xuya dike li pêş wî. Siwarbûn û şûnvegerîna keştiya bi babir ku pê hatiye. Lê belê Mansur jê dixwaze ku bila bipê, Abdurrahmanê ku kurê wî ku dê têkeve şûna bavê xwe, bi qasî bavê xwe, tew jê jî zêdetir, qîmetê dide hunerê û hunermendan û bila nameyeke ku rewşa wî aşkera dike, binivîse jê re. Mansur name digihîne mîrê nû Abdurrahman. Abdurrahmanê II., bi hatina Ziryab pir kêfxweş dibe û nameyeke dilgerm û hogirane dinivîse jê re. Wekî dî jî xeberê digihîne parêzgarê Algecirasê û pê dide zanîn ku Ziryab mêvanê wî ye û divê her cure mêvanperwerî bo wî bê nîşandan û divê bi ewlehî bê anîn bo Cordobayê. Axir Ziryab li Cordobayê ye.

Piştî bêhnvedana bi sê rojan, dor tê hevdîtina wî a bi Mîr Abdurrahmanê II. re. Di çûna vê hevdîtinê de sermuzîkkarê qesrê Mansur hevalbendî digel wî dike. Ziryab tirs û kelecanî di heman demê de dijî. Her çendî kelecana wî tiştekî fambar be jî, tirsa wî borîroja wî tîne bîra wî. Bexda tê bîra wî. Xelîfe Harun Reşîd û Îsheqê ku mamosteyê wî û sermuzîkkarê qesrê ye tên ber çavên wî. Hemû gesedanên dûre çêbûyî, careke dî, bi hemû germahiya xwe ve, bi bîr tîne. Bi çavên tirs lê barbûyî, car dî li Mansurê li cem xwe, dinêre.

Mîr Abdurrahmanê II., di payedariya bilind de pêrgîniya wî dike. Diyar dike ku ew rûmetdar û pêşanaz e ku mezintirîn muzîkkarê van serdemên modern li pêşberî wî ye. Der barê jiyana wî de pirsin jê dike. Ziryab, hemû çîroka jiyana xwe, bi awayekî zelane, lê kartêker vedibêje. Sohbet geş dibe. Qala dîrok, cografya, huner, wêje, astrolojî, felsefe, astronomî û kincçêkeriyê dikin. Mîr, hay lê dibe ku Ziryab ji muzîkkarekî bêtir zanwerek e. Ziryab, li Uda xwe ku ji Bexdayê bi vir de ye ji cem xwe veneqetandiye, hildigire û dest bi lêdanê dike. Stranek dide dû straneke dî. Mîr difikire ku deng û stîleke wiha heta wê rojê, di wê axê de, peyde nebûye. Kesayetiya Ziryab a nefsbiçûk, agahdariya wî a di biwara zanîna giştî de û geviliya wî a derasayî a di biwara muzîkê de, bandoreke zêde li ser Mîr dike. Mîr, hema wê kêliyê Ziryab dike sermuzîkkarê qesrê. Têkiliya wan, bi vê jî namîne, diçe ser têkiliya hogirî û hevaltiyê. Ji bo Ziryab jiyaneke nû dest pê dike. Êdî hemû keys û delîve li ber wî ne da ku karibe geviliyên xwe derpêş bike. Ew jî di vî barî de qet çikûs tevnagere. Di demeke kurt de nav û nîşana wî li hemû welêt belav dibe.Tê gotin ku Ziryab deh hezar stran bi jiberî zanibûye. Muzîk ji bo Ziryabê ku di heman demê de şa'îr û nivîskarê gotinên stranan e, terapiyek e. Ew vê terapiyê di nav gel de belav dike. Ud, ku ji hêla zanayan ve, wekî kurê Citara a Yewnanan û bavê Gîtara îro tê qebûlkirin, heta dema Ziryab ud bi çar têlên cotikî ye. Ziryab têla pêncemîn lê zêde dike.

Ziryab, hosteyekî mezin ê lîrîzm û serpilkiyî ye. Dûreparêz e, sehwer e, hestwer e. Wekî dengbêjan. Wekî hosteyên Flamenkoyê. Em di kesbûn û kesayetiya Ziryabê ku veguhêzîner û pêkhênêrê ekola Musilê û her wiha ê muzîka Kurdî ye û ji hêla zanayên mezin ên muzîkê ve, -wekî Felif Grande, wekî birayên Carlos û Pedro Caba, wekî Reniero, Pedro Dozy û Julian Riber- bavê muzîka Flamenko tê qebûlkirin, analîza têkiliya ku di navbera muzîka Kurdî û Flamenkoyê de heye, dihêlin ji wan kesan re ku di vî barî de şareza ne û her wekî Manuel Martorelli jî diyar kiriye, hema di ser re dikarin peyta van wekheviyan bikin: her du muzîk jî melodîk û dirêj in. Di her duyan de jî deng li pêş e û pir girîng e

Nûtiyên ku Ziryab di girava Îberê ku di rojavaya başûrê parzemîna Ewrûpayê de ye, pêk aniye, bes ne di warê muzîkê de ne. Li Andaluciyê navê Ziryab, digel muzîkê tê wateya afirînerê zerafet, şiqbûn û estetîkê û ew wekî şoreşgerê muzîkê tê zanîn. Berî ku Ziryab bigihe Cordobayê, araq di tasên zêr û zîvîn de tên vexwarin. Ziryab, krîstalê dibe wê derê û êdî araq di şûşeyên krîstal de tê vexwarin. Ev nûtî, di heman demê de ji bo şa'îran jî dibe kana bestlhilanînê. Ziryab, bi tevî kinclixwekirinê, di xweçêkirin û makyaja jin û mêran de jî nûtiyên girîng çêdike. Hêwana xwexweşikkirinê vedike. Li şûna modêla porê dirêj ku heta wê gavê li dar e, modêla porê kin dide nasîn. Ziryab, ji bo her demsalê, modêlên kincan ku ji rengên bi demsalê re lihevkirî, çixêz dike û dike ku ew bên hilberandin. Her wiha, ev demvegera kincan ku Ziryab diafirîne, dibe pêşenga modeyekê.



Ji bilî muzîkê, mezintirîn nûtiya ku Ziryab kiriye di warê gastronomî û mitbexê de ye. Ziryab, awayê çêkirina xwarinên Mezopotamyayê bi Andaluciayê dide nasîn. Çanda xwarinê a ecêbxweş a Mezopotamyayê, li wir bi temamî kartêka şoreşê dike û heta roja îroyîn wekî Mitbexa Ziryab tê zanîn. Ibn Hayyan, ji bilî taybetiyên wî ên ku me li jor gotin, dibêje Ziryab di warê astronomî de jî xwedî zanîneke kûr û berfireh e.

Herçî jêderka Ziryab e, gelek hêl û alî xwe lê dikin xwedî. Ên ku jê re dibêjin Faris e, Ereb e, Kurd e hene, tew ên ku dibêjin Pakistanî ye jî hene. Li gorî dîtina min a takekesî, ev nêziktêdayîneke durist e. Ji ber ku Ziryab, mezin e bi qasî ku di yek nasnaveke etnîkî de hilneyê û di heman demê de ji van kanan jî xwariye û vexwariye. Ew bi qasî ku Kurd e, Farisek e, Erebek e, Berberiyek e û Endulusiyek e. Ziryab di sala 857'an û di 68 saliya xwe de li Cordobayê koça dawîn dike.

Li dû xwe, neh zarok û navekî nemir dihêle; Ziryab...





# Munaqeşeyê lehçe û ziwanî de problemî



**Meqale û nuşteyê ke derheqê zazakî û zazayan de nusîyayê, zafê înan de tehrîfat esto; dîyardeyî, kelîmeyî tehrîf benê. Tayê dîyardeyê sabîtî estê ke qet behsê înan nêbeno.**

**Zazayî zî kurmancî zî netîceyê polîtîkaya miletê serdestî de, bi plan û program ziwanê xo ra dûr kewtê û tirkî musayê. Labelê nê munaqeşeyî de na perse nêpersenê ke nê zazayî senî, bi çi metodî, netîceyê kamcîn polîtîkayan de tirkî musayî.**

ROŞAN LEZGÎN

Munaqeşeyo ke derheqê "lehçe" û "ziwanî" de beno, yan zî rasterast ma vajin derheqê "zazakî" û "zazayan" de beno, newe yo. Tarîx de ma rastê munaqeşe yan fikrêkê winasî nêbenê. Xora no munaqeşe delîlanê tarîxî ser o nêbeno. Ancî kulturî ser o, nasnameyî ser o; xohîskerdiş, xonamekerdiş û xotarîfkerdişê şarî ser o zî nêbeno. Hîna zaf kategorîzekerdişê ziwanî ser o karakterê propaganda de aver şino.

"Propaganda" çi ya? Propaganda sey enstrumanêkê polîtîkî, bi mesajan komelî (toplum) goreyê fikrêk ra manîpule kena û îqna kena. Yanî xo rê yew hedef tayîn kena û seba ke bireso meqsedê xo, her tewir metodî ceribnena.

Derheqê metodê propaganda de ez wazena yew nimûne bidî. Seserra vîyartîye de munaqeşeyê "kurdî estê yan çin ê" bîyêne. Hîna zaf tirkan no munaqeşe kerdêne. Destpêk de, seba ke nê munaqeşeyî rê çimeyêko îlmî îcad bikerê, 1918 de kitabêk bi nameyê "Kürtler: Tarihi ve İçtimai Tetkikat" hetê Osmanlı Muhacirin Müdüriyet-i Umumisi ra weşanenê. Nuştoxê nê kitabî qaşo Dr. Friç o, û Habîl Ademî zî almankî ra tadayo. Hetanî serranê 1980an zî no kitab sey "referansêkê îlmî" nîşan dîyayêne. La dima eşkera bi ke nuştoxê kitabî Teşkîlatê Mexsusa ra yew kadroyê Îttîhad Teraqî yo, nameyê ey Nacî Îsmaîl Pelister o. Ey bi xo no kitab bi tirkî nuşto. Herhal wina fikirîyayê, weşanayîşê kitabî bi nameyê ewropayijêk ke wayîrê tîtrêkê akademîkî yo, hîna zaf qebul vîneno, ci ra yeno bawerkerdiş.

Derheqê kitabê M. Şerîf Firatî "Doğu İlleri ve Varto Tarihi" de zî supekulasyonî estê ke qismêko muhîm yê nê kitabî ey nênuşto.

Eynî bi no qayde, qismêk merdimê ke munaqeşeyê derheqê zazakî û zazayan de nameyê înan vîyareno de zî şubheyê cidî este. Nînan ra derheqê Xeyrî Başbuğî de, derheqê Ebubekir Pamukçuyî de zaf spekulasyonî benê. Mesela, yew şîîra tirkî ya Ebubekir Pamukçuyî wina ya:

"Ben Kimim
Ben Oğuz um, be Oruc'um
Mertlerin beyi, Osman'ım ben
Çaldıran'da Ridaniye'de, Mekke'de
Müslümanlar'ın beyi Yavuz'um ben
At üstünde Mustafa Kemal'im ben
Adımız Türk
Dilimiz Türkçe
Türk'üm, Türk'üm ben"

Gelêk balkêş o, merdimêko wayîrê nê hîsîyatî dima wirzene beno serkêşê zazakî û zazayan! Helbet nê vurîyayîşî rê yew îzehet lazim o. Gelo heqîqeten vurîyayo yan nameyê tirkîstîye ser o fealîyetê xo sey wezîfedarêk dewam kerdo? Na nuqta meşkuk a.

Na tarîtî û xumamîye dezgeyan ser o zî esta. Mesela, derheqê "Zaza Kültürü Yayınları" ke kitab û broşurî weşanayê de melumat çin o, dezgeyêko nimite yo. Ancî, ge-ge tora înternetî ser o vilawekê (bilidiri) basît û bêsewîyeyî vila benê, bin de "Zaza Ulusal Hareketi" nusîyeno. La no hereket key, kamca, çi wext ronîyayo, hetanî nika se kerdo, program û tuzukê xo çi yo, hedefê xo çi yo, kes çîyêk nêzano. Esto yan çin o, bellî nîyo.

Tora înternetî ser o bi sernameyê "Diyarbakır'dan bir Zazaca Alevi metni" yew meqale şeklê dosyaya pdf de esta. Ser o nuşte yo ke Fexrî Pamukçu na meqale îngilîzkî ra tadaya tirkî. Îdîa beno ke Mustefa Dehqanî

na meqale nuşta. Seba nuştoxî binê meqale de îbareyê “bağımsız bilim insanı, Iran” nuşte yo. Meqale de behs beno ke yew destnuşteyê zazakî ke hetê kesêkê elewî yê bi nameyê Sultan Efendî ra nusîyayo Dîyarbekir de sehafêk ra kewto destê ey. Mustefa Dehqan vano, no metn 1798 de nusîyayo û 32 rîpelî yo. Meqale de behsê nê metnî beno la metn bi xo çin o! Hetanî nika zî îsbat nêbîyo ke metnêko winasî esto. Cêrnotêkê na meqale de behs beno ke “Sponsorê nê cigêrayîşî Weqfa Îlmî ya Neteweyî ya Îranî” ya. Yanî meqale bi sponsorîye amade bîya. Meqale de, tarîx de şêxanê sunîyan ke bi kurdkî metnê dînî nuştê, bi sextekarî îtham benê. La îhtîmalêko pîl na meqale bi xo yew sextekarî ya.

Meqale û nuşteyê ke derheqê zazakî û zazayan de nusîyayê, zafê înan de tehrîfat esto; dîyardeyî, kelîmeyî tehrîf benê. Tayê dîyardeyê sabîtî estê ke qet behsê înan nêbeno. Sey nimûneyî, zafê zazayan xo ra vanê “kird”, ziwanê xo ra zî vanê “kirdkî”, heta kitabo tewr verên ke zazakî nusîyayo nameyê xo Mewlidê Kirdî yo. Labelê kesê ke nê munaqeşeyî kenê qet behsê nê nameyî nêkenê.

Nê munaqeşeyî de problemêko cidî zî no yo ke kesê bêehlîyetî, bêeleqeyî zaf zêde ra kewenê mîyan, xo tede tetmîn kenê. Sey nimûneyî, Alî Kemal Özcan doçent o, Unîversîteya Mamekîye de xebitîyeno, werişto derheqê zazakî de meqale nuşta, kitabê sempozyumê Unîversîteya Çewlîgî de daya weşanayîş. Sere de îdîa keno vano, na xebatêka akademîk a, datayê (veri) zanistî ke kes nêeşkeno red bikero, ez ana meydan. Û 200 tene çekuyî panc estunan de; yanî tirkî, kurmanckî, zazakî, înglizkî û almankî de dayê têver. La çekuyan de tu sîstematîk çin o; tayê estê name yê, tayê estê fîîl ê, tayê zî fermanê raweyî de fîîlî şuxulnayê. Kurmanckî û zazakî de, tu çeku yan têvernayîşê înano rast çin o, xora çekuyî pênêgênê. Mesela, estuna zazakî de “kıştayiş” nuşto, kurmanckîya ci “Hatın kuştın” nuşto. Kurmanckî de “Dê, dayik”, vera ci de “ma” nuşto. Estuna kurmanckî de “Bav”, vera ci de “pî” nuşto. Kurmanckî de “Bikuj, kujandın”, zazakîya ci “kıştene” nuşto. Peynî de vano, mi tesbît kerd ke kokê % 51ê çekuyanê zazakî û kurmanckî cîya yo. Bi no qayde mi îsbat kerd ke zazakî yew ziwano cîya yo.

Nê munaqeşeyî de, exlebê xo seke Alî Kemal Özcanî kerdo, zazakî û kurmanckî ra tayê çekuyanê îzoleyan wina keyfî û bi hawayêko xelet danê têver, tayê ferqan vejenê meydan û lebitîyenê ke zazakî sey “ziwanêkê cîyayî” nîşan bidê. Kîşta naye de, ge-ge behsê yewbînan ra “fehmnêkerdiş”ê kurmancan û zazayan zî beno.

Eke zazakî yew ziwano xoser û cîya yo, ganî tarîx de yew ziwano bi nameyê “zazakî” estbîyêne û zazayî zî tewr tay qasê kurdan yew mileto xoser û cîya bîyêne! Yanî wayîrê tarîxêkê cîyayî, wayîrê cografyayêka cîyaye ke bi nameyê zazayan name bena, wayîrê kulturêkê cîyayî, ancî gereka zazayî wayîrê nasnameyêkê milî yê xoserî bîyêne. La ne tarîx de ne zî ewro tu emareyêk, tu îşaretêk ke nê çîyan nîşan bido çin o. Mesela, ma qet tarîx de nêvînenê ke sey milet behsê zazayan bîyo. Ne zazayan xo ra vato ma miletêko cîya yê ne zî teber ra kesî vato. Eksê naye, heme çimeyan de behs beno ke zazayî yew qebîle yan zî eşîra kurdan ê.

Helbet tarîxê nuştekî, belgeyê arkeolojîkî zaf muhîm ê, la tarîx tena çîyo ke seyahan, mîsyoneran, weqanusan, katiban yan zî akademîsyenan nuşto nîyo. Tarîxê fekkî, mavajin rîwayetî, efsaneyî û heme eserê folklorîkî yê miletêk zî zaf muhîm ê. Mîyanê folklorê zazayan de yew emare, yew vatiş yan temayul ke zazayan sey miletêkê cîyayî nîşan bido, o zî çin o. Eksê naye, çiqas efsaneyî, estanikî, vateyê verênan, îdyomî heta bi lorîgê zazayan, kurdanê bînan reyde muşterek ê. Coka no munaqeşe hetêk ra fantastîk aseno; munaqeşeyêko viraşte û sûnî yo, zemînê xo heqîqî nîyo. Munaqeşeyê derheqê “zazakî” û “zazayan” de, xususîyetêko muhîm, seke problemê zazayan tena kurmancan reyde esto, coka hertim vera kurmancan de bi hawayêko zaf mubalexe muxalelefet beno. Yanî kesê ke vanê “zazakî ziwanêko xoser o” çekuya “kurdkî” teşmîlê kurmanckî kenê û muxalefet kenê. Mesela, belkî çarine ra yewê zazayan ancax kurmanckî bizanê û fehm bikerê. La heto bîn ra, temamê zazayan tirkî zanê. Zazayê ke kurmanckî fehm kenê yan zî qisey kenê, netîceyê asîmîlasyonêkê organîzekerdeyî de nê musayê. Zazayê ke kurmancî zanê, mîyanê cuya rojane de bi hawayêko tebîî musayê. Mesela, ez bi xeyretê xo yê şexsî kurmanckî musaya. Yanî yew dezgeyê kurmancan ke ronişo, qerar bigîro, vajo ma zazayan asîmîleyê kurmancîye kenê, ne tarîx de estbîyo ne zî ewro esto. La musayîşê tirkî wina nîyo! Zazayî zî kurmancî zî netîceyê polîtîkaya miletê serdestî de, bi plan û program ziwanê xo ra dûr kewtê û tirkî musayê. Labelê nê munaqeşeyî de na perse nêpersenê ke nê zazayî senî, bi çi metodî, netîceyê kamcîn polîtîkayan de tirkî musayî. Vera asîmîlasyonê tirkî de, vera polîtîkayanê dewleta tirkan de tu îtîrazêk yan zî qayîlnêbîyayîşêkê nê kesan çin o. Tam eksê naye, kesê ke nê munaqeşeyî kenê, bi asîmîlebîyayîşê zazayan seba tirkî zaf qayîl asenê. Coka se vanê wa vajê, vateyê înan sehîh nîyo. Yanî no munaqeşe hetêk ra zî sehîh nîyo, heqîqî nîyo. **(Wê bidome)**

# Ziwanê dayîke, ziwanê damêrrî

MURAD CANŞAD

**İstanbul de enstîtuyêk esto: Enstîtuyê Kurdî. Bi tirkî vanê “Kürt Enstitüsü.”**
**No enstîtu 1992 de ronîyayo, a roje ra nat o kar û barê xo ser o yo. Cayê xo Lalelî de bî. 2010 de cayê xo vurna; nika bînaya xo ya newa Unkapanî de ya. Zaf dûrî nêşîyê, ancî merkezê merkezê İstanbulî de…**
**İstanbul biveşo, ne serê xo yo ne verê xo yo!**
**Hem Lalelî hem zî Unkapanî zereyê suran de manenê. Zereyê suran cayê qesran û qonaxan û camîyan û dêranê tewr girsan û kanan o. Împaratorîya Bîzansan uca ra îdare bîya. Dewleta Osmanîyan zî xeylê waxt uca ra îdare bîya.**
**Nêmgirawe ya cayê xo. Hetêk de kendawe (xalîç), hetanê bînan de dengiz (Marmara)… Rojawanî ser verê xo akerde yo. Erazîya xo hema-hema sey deşte ya. Ca-ca qijkek-qijkek tumî estê.**




**Zereyê suran de, hema-hema tam cayê orteyî de tumêk esto. Verê, nameyê xo çi bîyo, ez nêzanena. Nika semtê serê ê tumî rê Beyazîd vanê. Uca ra hem kendawe hem dengiz hem zî erazîya terefê rojawanî verê linganê merdimî de sey zereyê tase asenê. Hetêkê xo keskela, hetêkê xo kewela… Tam serê tumî de kuleyêka girse viraşta waxtê verênî ra. Serê kule ra nover-bover hîra û hîra aseno.**
**Lalelî hetê rojawanî de pêşê tumî ra yo. Enstutîya Kurdî yê İstanbulî 18 serrî pêşê ê tumî ra seba ziwan û kulturê kurdan xebitîyayo. O do nika ra tepîya kişta kendawe de bixebitîyo. Cayê xo yo nikayên raste yo. Vanê bînaya xo zî hîna rind û hîra ya. Bi xeyr bo!**
**Enstîtuyê Kurdî, îdareyê xo piştîya şarê ma ra yo. Çi kirmanc (zaza) çi kirdas (kurmanc) bi ereqê çareyê şarê ma ronîyayo, xebitiyayo. O da bixebitîyo zî. Şarê ma nêvato ke ez kirmanc a, ti kirdas a… O yo ke şima ziwan û kulturê ma ser o xebitîyenê şima rê canê ma qurban, vato. Bi nê ziwan û zagonî hereket kerdo.**
**Heqê xo nêyeno werdene, nêyeno înkar kerdene. Enstîtuyê Kurdî yê İstanbulî goreyê xo xebitîyayo, ziwan û kulturî rê xizmet kerdo. Kovarî û kirabî vetê, ferhengî û setê ziwanmusayîşî amade kerdê, karê perwerde û arêkerdişî kerdo. Seba ziwanê dayîke mucadele dayo…**
**La hetêkê xo timutim kêmî mendo. Qet kirmanckî nêardo xo vîr! Qet nêvato ke kirmanckî zî esto!**
**Çi ke kerdo pêro bi kirdaskî kerdo. Kirmancê ke şîyê barê înan, seba kirdaskî teşwiq kerdê, seba kirmanckî nêkerdê. Kirdaskî musnayo înan, kirmanckî nêmusnayo. Uca de tayê kesî perwerde bîyê, ziwanê xo kirmanckî yo, la seke tewbe kerdo, kirmanckî ra dûrî vindenê. Bi destê nê enstîtu ferhengê kirdaskî amade bîyê ke her yewê xo panc kîloyî esto! La bi kirmanckî yew sanike, yew deyîre (kilame) bîle arê nêdaya. Yew maqale bîle nênuşta.**
**Qey?**
**Qey bawo qey?...**
**Ma no heq o, edalet o?**
**Ma “kurdênî” ya ke vanê na ya?**
**Kirdaskî ziwanê dayîke, kirmanckî ziwanê damêrrî!**

# Ziman her dem zindî ye!

**Dewletên îro, li hemberî zimanên bindest li gor demên borî, hinekî nermtir in. Lê dîsa jî, dewleteke wek Tirkiye hîn rê nade ku kurd bi zimanê xwe li dibistanan dersan bibînin.**





**BasNûçe**

Ewçend ku bi nebûna zimên raman nabin, bi nebûna peyvan jî wekxwebûnî nabe. Çi zimanê îngilîzî, çi rusî an jî çi bayerî bin: Ziman beşeke ji çandê û ew xwe bi berfirehîbûna çandî digihînin me. Ji bona vê Nerewên Yekgirtî (UN) sala 2008'an wek "sala zimanan" ragihandibû.
Li gel teknîkên nûjen: Gelên înuîtî jihevdûrbûnê ne bi kîlometreyan, lê bi xewa razanê dihesibînin. Bi zimanê înuitayî ku li Bakurê Grönlandê dijîn, jihevdûrbûn (mesafe) ne bi kîlometreyan, lê bi „sinik" û bi „razanê" tê hesabkirin. Wiha dibêjin: Heta ku ez ji cihê A´yê bigîjim cihê B´yê, ezê çend caran razêm? Welatekî ku demsal û rewşên heyamê berewajî ne, li wir agahiyên wek "kîlometre" an jî "katjimêr" bê feyde ne. Mirovên ku sê rojan li Balafirgeha Kangerlussuakê di tengavê de bimîne wê vê yeke baştir bizanbin.
Ev tenê mînakeke ku mirov zimanan wek neynuka kulturî û kevneşopî bihêse. Ew wekxwebûnî (îdentîtî) ji mirovan tê, dîsa bi kevneşopî û bi hebûnajiyanê ve vedigere mirovan. Ku ziman vinda dibin, ev kultur jî bi hemû hebûna xwe ve bê jinuvevegerî vinda dibin. Redaktorê Eurolangê Davyth Hicksî ku xeberan ji zimanên piçûk ên Evropî berhevdike, dibêje; „pirzimanîbûn jixwe parek ji pirbîyolojîkîbûn e jî. Ku hêwan(ajal) an jî gihayên bi her cureyî ji hebûna xweyî li ser Dinê vinda dikin, ew vindabûnî ne tenê jibo wan e, jibo hemû Planetên heyî jî dibe kemasiyek. Ger em zimanê xwe vinda bikin û di du wana de tenê almanî, îngilîzî, fransî û çînî bimînin, divê nayêjibîrkirin ku Dinê jî ewqasî wana bivê nebûnê feqîr dimîne."

### Ji axaftina zimanê xwe tirsîn

Sedema ku firezimanî û bîyofireçandî xwe biparêzen, NetewênYekgitî sala 2008'an wek "sala zimanên înternasyonalî" binavkir. Mijar zelal bû: Divê firezimanîbûn bihata parastin. Îro li ser rûyê cîhanê ji 7000 zimanan nivî di bin xetera vendabûnê û mirinê de ne.
Herçiqas hemû hikumet ne wek hikumeta Awûstralyayê dijî zimanekî bindest ewqes hov û barbar bin jî, ew xetereke mezin e. Aborîjînekî Awûstralî dibêje, ew rasterast fêrî zimanê xwe nabê. Dibêje; "Li cem me, bi zimanê xwe axafin, ji bo aborîjînekî qedexe bû. Dema ku em bi zimanê xwe diaxifin û ku hikumetê jî em bidestdixistin, an li me dixistin, an jî em dikuştin. Piraniya bav û kalên me nedixwestên bi zimanê xwe biaxifin. Ji ber ku ew ji rewşa xwe ya ku ew tê da dijîn, pir ditirsîn."
Devletên îro, ji bo zimanên bindest li gor demên borî, hinekî nermtir in. Lê dîsa jî, devleteke wek Tirkiye hîn rê nade ku kurd bi zimanê xwe li dibistanan dersan bibînin.
Çendîn ziman, hîn ku qet nekişîne ser xetan (kaxizan) li ber mirinê ne. Tenê li Afrîkayê 2000 ziman hene. Lê li piraniya bajarên Afrîkayê îngilîzî, fransî, an jî portekîzî zimanê netewî û fermî ne. Zimanzan Kofî Yakpo dibêje; "Ziman, desthilatî û demokrasî bihevre girêdayî ne. Welatekî bidin ber çavên xwe ku, li wî welatî li her heremê, zimanên dagirkeran bên axaftin. Bi vê yeke ve civak ji çanda xwe dibe biyanî û dikeve rewşeka nû. Piraniya civakê rasterast nikare hevpar bibe. Jihev cudabûnî kûr dibe û ti derfet jî di dest wan de namînin ku li herema xwe, wek xwe bijîn."

### Zimanên di nav civakan de tên axaftin

Herwiha di înformasyonên nav civakê de tê belavkirin jî zimanên heremî rolekî girîng dilîzin. Wek mînak em kampanyayên li ser AİDS'ê bidin ber çavên xwe; Ku ew tenê bi zimanekî birêve biçin, lê ji civakên heremî jî tenê nivî ji wan nivîs û belovokan fêm bikin. Ewê çawa biserbikev in? Hîndû wek mînak in. Zimanê hîndû -bi îngilîzî ve- di hundirê federalî de bi fermî bikartê, lêbelê xelkê ku wî zimanî bikartînin tenê ji sedî çil e. Tenê li Hîndîstanê 600 gelên çîyayî zimanên ku li dibistanan nayên fêrkirin, diaxifin. Dîsa nêzikî 400 zimanên ku gel di navhev de diaxifin, ji wan tenê bi 60 zimanan ders tên dîtin.

### Ji bo pîşeyeke baş zimanê xwe biaxive!

Kesê ku dixwaze li bajarê Pekînê bixebite, divê bizanibe ku bi nezanîna zimanê mandarînî nikare bi pêşve biçe.
Li welatê Çînê, qet tunebe heft grûbên zimanên spesifîk û ji hev cuda û 130'î zêdetir devok hene. Ji sala 1950'an vir ve mandarînî, an jî putonguanî wek zimanê fermî tê bikaranîn. Ji 1.3 mîlyar şêniya Çînê tenê nivê gel zimanê mandarînî baş dizane.
Çendîn devok jî giran giran dimirin. Beatrice Kalduna ku li Buroya Pekînê ya UNESCO'yê dixebite wiha dibêje; „Kesên ku zimanê mandarînî baş nizanibin, nikarin bibin xwedî karekî baş û piraniya malbatan, wan ku dixwazin zarokên wan xwedî pîşeyeekî baş bin û baş perwerde bibin, vî zimanî (mandarînî) ji zimanê xwe yê gelêrî girîngtir dibînin."
Piraniya pisporên ku ji vê rewşa giran ditirsin jî, ramanên Beatrice Kaldunê rast dibînin. Lêbelê ji aliyekî din ve, nîşanên pozîtîf jî ji bo fêrbûneke nûh bi ziman, çand û wekxwebûnî ve girêdide û pêşvediçe. Îro gav bi gav hinek tekst bi zimanên ku heta niha tenê bi gotinî (zarî) bûn, tên nivîsandin. Tam jî bi vê mijarê ve girêdayî UN dixwaze bi xebatên wek çalakiya "sala zimanan" bandora xwe bi hêz bike û bi çandeke nû yê li ser derîyên girtî yê firezimanîbûnê vebike.

**Wergera ji almanî: ROHAT MÎRAN**

# 220 girtiyên nexweş li benda mirinê ne

BasNûçe

Piştî ku 4. pakêta darazê ji alî parlamentoyê ve hate qebûlkirin li Tirkiye bi taybetî rewşa girtiyên nexweş, bi tevahî rewşa girtîgehan careke din hate rojevê. Her çiqas ku li gor qanûna nû divê nexweşên girtî bi lez bêne berdan jî, vê carê zarûreta erêkirina Tipa Adlî û tevî vê jî destûra dozger weke astengî di rojevê de ye.
4. paketa ku bi guherînên nû bibû sedema hêviyan ji bo nexweşên girtî nebû xwediyê tu guherînan. Ji ber ku piştî paket hate qebûlkirin vê carê rewşa girtiyên nexweş di asta dawî de dê diçe ber dozger û nêzikahiya dozgeran jî di vê mijarê de bi temamî neerênî ye. Pirî cara dozgerî bi hinceta ku girtî "zirarê didin civakê" rê nade ku girtiyên nexweş bêne berdan.
TUHAD-FED a ku demek dirêje ji bo pêdiviyên girtiyan têdikoşe ji bo ku ev destûr ji dozgeran bê stendin di nava xebat û çalakiyan de ye lê hê jî di vê mijarê de pêş ve çûyinek nîn e û rewşa gelek girtiyên nexweş xetere ye. Serokê TUHAD'a Stenbolê Recep Belek di derbarê avakirin û xebatên TUHAD'ê de agahî dan BasNûçe û anî zimên ku, 56 girtiyên ji yên nexweş niha di rewşeke giran de ne û asta nexweşiyên wan gihaye talûkeyê.
Belek wiha domkir: Wekê hûn jî dizanin ji salê 80'yî vir de li zindanên Tirkiyê û Kurdistanê li ser girtiyê siyasî yên ku girêdayî tevgera azadiyênin bi me re di têkiliyê de ne û em weke komele ji bo bi wan di warê hiqûq û pirsgirêkên malbatî dixebitin. Ji xwe sazî ji bo vê hat avakirin. Ji sala 1996'an ku ev sazî hate avakirin vir ve ji bo çareseriya pirsgirêkên girtiyan yên aborî û tendirûstî çi bikeve ser milê me em ji wan re dibin bersiv."
Belek diyarkir ku li Tirkiye her ku diçe hejmara girtiyên nexwex zêde dibe, niha bi tevahî 202 girtiyên nexweş li ber guherîna qanînan in û 56 ji van rewşeke xetere de ne û divê ji bo van bi lez guherînek çêbibe da ku li ber mire ne.




Pirî cara dozgerî bi hinceta ku girtî "zirarê didin civakê" rê nade ku girtiyên nexweş bêne berdan.

### Zirarê didin civakê!

Belek, da zanîn ku li gor qanûna heyî, ji bo ku girtiyên nexweş bên berdan divê ji dozgeriyê erêkirina "zirar nade civakê" bê dayîn û ji bo vê jî ew qanûn keme û hewceye ku bi lez bê guhertin. Belek wiha dirêjî da axaftina xwe, "Tipa Adlî di gelek raporên xwe yên di derbarê girtiyên nexweş de diyar dike ku rewxa wan ne baş e û divê bêne berdan. Lê tevî vê jî ber ku biryaraî dawî divê bi destûra dozgeran be dayîn, girtî nayên berdan. Dozger bi sedemên kesayetî yên siyasî rê li ber beradana girtiyên nexweş asteng dikin. Ji ber ku dosya ji alî dozgeran ve tê binpê kirin, rewş naçe ber deste serokkomar jî".

### Rêwitiya rîngê bi tena serê xwe îşkence ye

Weke tê zanîn mijareke din jî rêwitiya girtiyên nexweş a bi ringan e. Ji ber ku girtî di rîngê de kelepçekirî û di cihekî teng de sewqî nexweşxaneyan tên kirin, pir caran naxwazin ku biçin nexweşxaneyê jî. Belek ji bo van miemeleyan daxwaza yasayek nû jî kir û got, "Tenê rêwitiya bi rîngê jî işkeceyeke. Dema ku girtiyên nexweş derdikevin ber bijîşkan, deste wan ji kelepçeye dernaxin. Ji ber wê gelek caran girtî naxwazin bêne dermankirin. Wê yekê li dij sonda Hipokrat û rûmetê dibînin. Carna dermanekî didine wan ku divê ji 3 rojan bêhtir bi kar neye lê bijîjk ji wan re dibe 10 roja bi kar bîn. Hinek dixtor ji xwe bi neyartî li wan dinerin. Jiyanek mirovî jî ji gelê me re pir dibînin."
Belek di axaftina xwe de bang li saziyên siyasî û civakî kir ku ji bo rewşa girtiyên nexweş mil bidin xebatan û ji bo saziyên fermî jî banga guhertina qanûnê kir u careke din bal kişand ser rewşa wan a giran. /**STENBOL**

## Ji 619 girtiyên nexweş 220 di rewşeke giran de ne

Piştî ku 4. û 5. Paketên darazê ji alî parlementoyê ve hatin qebûlkirin li nava civake hêviyeke ku girtiyên nexweş bêne berden derket holê. Lê ji ber ku mesele di dawiya dawî de teslîmî dozgeran tê kirin, bi sedan girtiyên nexweş di zindanan de li benda mirinê ne.
Mijara girtiyên nexweş bi kampanyayeke îmzeyê kû ji alî navên ku di nav de, Immanuel Wallerstein, Noam Chomsky, Gaspar Miklos Tamas, Vedat Türkali û Murathan Mungan jî hene kete rojeva cîhanê jî. Wekî din hema her roj li gelek deverên Tirkiye û Kurdistanê xwepêşandan û çalakiyên ji bo berdana girtiyên nexweş têne kirin û ji serokkomar tê xwestin ku bil ez biryara berdana wan bide. Parlementerê HDP'yê Faysal Sarıyıldız jî beriya demek kin raporek di derbarê mijarê de pêşkêşî Serokkomar Abdullah Gül kir. Li gor rapora Sarıyıldız li girtîgehan niha 619 girtiyên nexwex hene û jê 220 di rewşeke xetere de ne. Di raporê de hate diyarkirin ku ji ber raporên Tîpa Edlî û nêzikahiya dozgeran ku dibên heke ku ew bêne berdan dê biçin çiyê rê li azadiya wan tê girtin û divê qet nebe bi rê ya kelepçeyên elektronîk çareyek ji berdana girtiyên nexweş re bê dîtin.

# Li Almanya tirkên nîjadperest êrişî kurdan dikin

Berlîn - Fraksiyona Partiya Çep ya Parlamenê ji bo hukumet derbarê nîjadperestên de tirk de lêpirsînek bide destpêkirin, pirsnameyek peşkeşkir. Lêpirsîn ji aliyê mebûsên çepgir Ulla Jelpke, Sevim Dağdelen û Annette Groth hat dayîn. Di bersîva hukumetê de tê gotin ku, faşistên tirk (Gurên Spî / Graue Wölfe) bi rêyên internet, vîdeo û di tora medyaya civakî kurdan, ermeniyan, yûnaniyan, cihuyan û homosexuelan tehdît dikin. Li gor hukûmetê „Ciwanên Bozkurt", dijminatiya biyaniyan dikin û di heman demê de li kolnanan êrişê biyanî û kurdan dikin. Li gor daneyên fermî li Almanya di sala 2011'an de nîjadperestên tirk li dijî kurdan 17 êriş pêkanîne.
Hukumetê di bersiva xwe ya niviskî ya 16 rûpelên da wiha berdewamdike: „Li Almanya yê endam û sempatîzanên partiyên nijadperest (Milliyetçi Haraket Partisi (MHP) û Büyük Birlik Partisi (BBP) yên li Tirkiyeyê aktîf in li vîr wek „Bozkurtlar/Ülkücüler" tên naskirin û xwedî federasyonên wek „Avrupa Ülkücü Türk Demokratik Dernekleri Federasiyonu/Europäische Föderation der Türkischen Demokratischen Idealistenvereine" (ADÜTDF), Jugendorganisation Alperen Gençlik Ocakları, „Avrupa Türk dernekleri Birligi/Verband der türkischen Kulturvereine in Europa" (ATB) ne. Li Almanya nezikî 160 Komelên ATB û ADÜTDF'ê hene. Çiqas endamên van komelan hene hukumeta me ne xwedî agahiyên rasteqîn e."
Li gor agahiyên raporta saloxdariya navxweyî ya 2013'ê de li Almanyayê nezikî 12 hezar endamên „Ülkücü Gençlik" hene û bi 10 hezaran jî dilxwazên wan hene.



# Wê zarok bi 'Şengê û Pêngê' şa bibin

**Ji çîrokên gelerî yên kurda 'Şêngê û Pêngê' ku ji alî pedogojiyê ve balkêş e, êdî weke lîstika şanoyê dê bi zarokan ve li ser dike bê pêşberî hev**






Çîrok weke pirtûk jî hate çapkirin

AZÎZ TEKÎN

Çîroka gelêrî 'Şengê û Pengê' ku li tevayê Kurdistanê tê zanîn ji hêla dramatûrg Çetoyê Zêdo ve wek lîstika zarokan hat sahnekirin. Lîstik piştî ku hate amadekirin li çend bajarên Kurdistanê derket ser dikê û dil heye ku li her devrê bi zarokên kurdan re hev binase.
Weke gelek zargotin an jî çîrokên ku êdî tene kal û pîrên kurda dizanin li ber bîrbûn û têkçûnê ne. Ji van yek jî çîroka 'Şengê û Pêngê' ye ku ev ji vî deravî xilasbû û niha weke lîstikekê şanoyê ya zarokan dik bi dik digere. Dramatûrg Çetoyê Zêdo bal kişand ser giringiya çîrok û zargotinên kurdî û got, "Hemû tişt ji bin serê Murathan Mungan derket. Ew ji bo me navekî sereke bû û min peyva "dramatûrjî" ji wî bîhistibû û çîrok û lêgerîna hunara wêje û şanoyê dikarim bibêjim ku ji wî derbasî literatura min bû. Heta sala 2008'an jî min li gora xwendinên xwe rêyek dabû ber xwe, lê piştî ku min li Stenbolê dest bi xwendina beşa Dramaturjî kir û bi Engin Alkan re xebitîm, bêtir li şanoyê germ bûm."
Zêdo di agahiyên ku di derbarê berhemê de dan de anî zimên ku helwesta wî ew e ku bide nûşan da ku ji bo gelek xebata tekstên kurdî hene, mirov dikare ji bi rehetî ji çîrokên kurdî tekstên şanoyê jî biavfirîne. Zêdo hestên xwe wiha bi lêv kir:" Folklora kurdî dema tê qalê, herkes bi pesin qala dewlemendiya wê dike, lê dem tê bikaranînê weke tiştek tunebe tevdigerin, min xwest raste rast malzemeyek sedî sed ji folklora kurdî derxim ser sahnê.".

**Dilxweşiya me bi kenê wan tê**

Her çiqas van salên dawî bi dehan komên şanoyê derketibin jî lîsitkên zarokan kêm in, ên hene jî ne li gor pedegojiya zarokan in. Zêdo çêkirina şanoya zarokan wek deynekî ji xwe re bi nav kir û got, "Zarok kok e, ku mirov ji koka xwe dûr bikeve ew ê her tiştî wenda bike. Heger em bixwezin temaşevanên xwe zêde bikin, divê em bi baldarî nêzî zarokan bibin û ji bo wan gelek berhem û pêşandeyên din derxînin, ev deynê me ye. Ku mirov hinekî bi xîret be, bi derfetên kêm de jî dikare gelek şanoyên ku bala zarokan tevî mezinan derîne."
Zêdo derbarê eleqeya lîstika 'Şengê û Pengê' de kêfxweşiya xwe wiha da zanîn, "Me çi hêvî kiribe em dibînin ku zêdetir derdikeve himberî me. Zarokan pir ji lîstikê hezkir, lê eleqeya mezinan ew qasî ez bi xwe ne li hêviyê bûm, ev jî me bêhtir dilxweş dike. Listikek ku xwe li zarokan girtibe û bala mezinan jî kişandibe, ez dibêm ji vêya xweştir tişt tune. Her ku em kenê biçûk û mezinan dibihîzin em dilşa dibin û careke din dilxweşiya xwe bi kenê wan tînin."
Di lîstika ku ji alî Tîyatroya Zîv ve hatiye amadekirin de Zelal Yıldırım, Sultan Çaça, Hediye Cevizci, Mehtap Yıldırım, Zeynep Güneş, Hossain Zêdo weke lîstikvanî cih digirin. Mijara çîrokê bi kurtasî wiha ye: Bizina dayîk ji bo herdû karikên xwe yê nû çêbûye diçe zozana şîr tîne. Dema ew derdikeve gurek karikê wê dibîne û wan dixwe. Piştê ku bizin tê û karikê xwe nabîne li wan digere. Di dawiyê de bi gur re şer dike û karikê xwe ji gur distîne. Bûyer li dev dora vî çîrokê diqewime. /**STENBOL**




## Fûara Pirtûkan a Amedê 5 salî ye

Fûara Pirtûkan ku ji aliyê TUYAP û Yekîtiya Weşangerên Tirkiyeyê ve tê li dar xistin îsal li Amedê 5'emîn car li dar dikeve. Fûara îsal a Amedê di navbera 20-25'ê gulanê de lidar dikeve.
Fûar li Navenda Kongre û Fûarê ya Amedê dê roja 20'ê mehê dest pê bike. Li gor agahiyên ku ji amadekarên fûarê ve hate diyarbûn îsal bi beşdariya 150 weşanxane û saziyên sivîl dê beşdarî fûarê bibin. Konferans, gotûbêj, panel, xwendina helbestan jî di nav de li dor 50 çalakiyên hunerî dê li dar bikevin. Her wiha li dor 300 nivîskarî dê pirtukên xwe îmze bikin. Fûar rojên 20-24'ê mehê dê navbera saetên 10.30-19.30, roja dawî, roja 25'ê mehê jî dîsa dê 10.30 de vebe, lê 19.00'an de bi dawî bibe.
Di nava mêvanên nivîskar ên fuara îsal de navên wek Füruzan, Ercan Kesal, Canan Tan, İsmail Beşikçi, Faysal Dağlı, Murathan Mungan, Işık Öğütçü, Necdet Neydim, Büşra Ersanlı, İlber Ortaylı, Nedim Gürsel, Yılmaz Odabaşı jî cih digirin. Di çarçoveya fûarê de bi minasebeta 90. Salvegera mirina Alî Emîrî ku bixwe ji Amedê bû dê panêlek bê li darxistin û weke panêlîst de Fahri Aral û Alîgirê Rektor yê Zanîngeha Artuklu'yê Pr. Dr. Kadri Yıldırım jî beşdarbin.

## Cizîr ji bo festivalê amede ye

8'emîn Festîvala Çand û Hunerê ya Cizîrê îsal bi diruşma "Ziman û Çand sînoran nas nakin" ji bo Cejana Zimanê Kurdî di navbera 15-18'ê gulanê de li dar dikeve.
Di çarçoveya festîvalê de 4 roj wê li nava Cizîrê û gelek gundan wê çalakî li dar bikevin.
Festîval ji aliyê Şaredariya Cizîrê ve tê organîzekirin. Di festîvalê de gelek çalakî hene. Pêşengehên wêneyan, gerandina govendê, lîstina lîstikên şanoyê, pêşbirkên zanyariyê, guhdariya helbestan, dîwana dengbêjan û konser, di çarçoveya festîvalê de dê bêne li dar xistin. Ligel van dê panelên wekî "Civak û Ol", "Civak û felsefeya ziman", "Bûyerên kiryar nediyar", "Jin û neteweya demokratîk" û "Qirkirina çandî û asîmîlasyon" jî bên lidarxistin.
Wekîlê Şaredarê Cizîrê Metîn Bayik li ser festîvalê wisa got: "Cizîrê ji bo pêşketina dîroka zimanê kurdî gelek tişt kirine. Cizîr welatê Celadet Bedîrxan e; bi vê wesîleya em kêfxweşin ku ji bo Cejna Zimanê Kurdî festivalek li dar dixin. Em dixwazin balê bikşînin ser polîtîkayên asîmîlasyon ên li ser çand û zimanê kurdî. Em dixwazin festîvalê bikin cihê lêgerîna çareseriya pirsgirêkan. Em dê di festîvalê de çandên cuda jî bikin mêvan."

# Di felsefeyê de mijareke mînor: Êş

MİTHAT KUTLAR

Li deryaya felsefeyê de meriv dikare bêje ku her pirsgirêkekê an jî mijarekê rûyek felsefeyî û ramyarî heye. Ji ber vê her tiştî, ji bo felsefeyê wek mijarek nîrxandinê tê qebulkirin. Hebûna mirov û ya dinyayê, baş û xerabî, rastî û şaşî, lavînî û kirêtî, ferz û gunehî, hvd, gelek mijar, dîroka ramanê de bi çerçoveyek felsefeyî ve hatiye nîrxandin û hêj jî tê nîrxandin. Lê belê hinek mijar hene kû rastî kêm car li ser hatine ravestayîn. Evan mijaran de yek jî pirsgirêka êş û êşan e. Em dizanin kû hemu aliyan ve derfetên jiyana nujen, bandorek mezin li ser me dike. Çend derfet û careseriyan me re bike diyarî jî gelek nexweşî û pirsgirêkên nû jî diêxe nav jiyana me de. Eger em aliyê êş û êşan de bifikirin em dikarin bêjin kû gelek nexweşiyên devrên berê li saya zanistiya tenduristî a nujen holê rabune. Lê belê em dizanin kû gelek nexweşiyên nû jî piştî jiyana nujen a fikra zanistiya pozitivitî ya dur xwezayî de derketine holê. Ji ber vê çendê jî piranî sedsala 20ê de hemu warên ramanî de, hebuni û tendurustiya mirovan bi gelemperî buye pirsgirêka yekem. Lê belê warê felsefê de mijara êşê, bi taybet jî (çerçoveyek nu ve) saya felsefevanê elmanî Hans-Georg Gadamer wek mijarek mînor hatiye nîrxandin.




**Êş bi kurdî jî xweş e.**

Bi rastî salane, em benda berhema bîrdozvanê felsefeya Hermeneutikê felsefevanê navdar Hans-Georg Gadamer a bi navê Êş mabun. Berhem, axaftina wî ya konferansa li ser "Êşan", ya ku roja 11ê Mijdara 2000an ji aliyê Klînîka Ortopedî ya Fakûlta Tibbê ya Zanîngeha Heidelberg re hatiye lidarxistî ye. Ev berhem di raman û felsefeya H.G. Gadamer de cihekî girîng digirît. Çi kû em dizanin kû di warê têgeheştina hebûnîya jiyanê û watedariya dinyayê de çend nîşaneyên taybet û girîng yên H.G. Gadamer derdixe pêşçav. Ji xwe gelek caran fikir û raman, jiyana bikarênerên xwediyê wan fikir û ramanan ve girêdayî ne. Gadamer jî jiyana xwe ya dûr û dirêj de gelek êşên cendekî/laşî jiyane. Ber vê jî êşa wî tesîrek mezîn li ser têgehiştin û şiroveya wî ya ser jiyan û hebuniyê kiriye.

Hêvîdarim ku xwendevanên hezkarên felsefê ên kurd dê vê berhemê bi zimanê zikmakî de bi heyecan û kêfxweşiyêkê ve bixwîne. Ji bo xwendevanên kurd weşanxaneya Avestayê heyameke ev berhem (du zimanî) wergêrandiye kurdî. Kerem bikin bixwînin. Çi ku "êş" bi kurdî jî xweş e.

**Êş çi dibêje mirov?**

Gadamer, berhema xwe de pirsgirêka êşê, wek diyardeyek felsefeyê ya esasî digire. Gorî nirxandinên wî êş, diyardeyek tibbî, felsefî û terapotîk a bingehîn e. Êş'ê Êş ne tenê nifşek pêşçav û ser ruyî ye, piranî nifşê kurahî û watedariya jiyanê a nepêşçavî ye. Eger mirov daxwaz bike ku wateya êşê çiye? Pêvîste kû bizane ka êş, yekem car kengê bi ramyarî tê hîskirin? Gorî Gadamer, dema kû em ser vê pirsê bifikirin em dê nêzîk bersiva pirsa xwe bibin. Dihare êşa ku Gadamer behs dike ne tenê êşek laşî/cendekî ye. Ev kas jî ramanî û hizirî ye.

Gadamer, êşê wekî nifşek an jî şopek wateyê ya jiyanê dibîne. Gorî wî, kê her dem xwe durî "êş"ê bixe lê eger taqeta wê/î nikare xwe dûr bike, vê demê pêvîste ku 'êş'ê wek derfeteke erênîkirina jiyanê qebul bike. Vê gavê jî hergav dibe spartekek têgehiştina û şiroveya jiyanê. Aliyek din Gadamer, ji bo careseriya êşê re bi tenê rêbaziya zanistiyên pozîtîvî û tibbî temam nabîne. Gorî wî pêvîste kû dermanên xwezayî jî bên bikaranîn. Ew dibêje, mirov perçeyek xwezayê ye û nav xwezayê de êşan digire, heman wusa jî derman û careseriyên êşên wî/ê jî xwezayê de hene. Bi rastî meriv dikare bêjîtin kû ev fikra erêkirina êş'ê aliyekê ve bin tesîra fikra Nietzsche ya "ev tiştê ku te nekuje, dê te xurt bike" de hatiye gotin. Gelek cîhan de bandora Heidegger jî tê hîskirin. Lê dîsa jî aşkera dîhare ku Gadamer, ev fikir û ramanên felsefevanên pêş xwe, li gorî xwe bi şiklekî nû û xweser ve pêşve birîne. Gorî Gadamer êş, wateyan dihilberîne. Ji ber vê jî pêvîste kû bê erêkirin jî. Dibêje, eger em ev êşên kû me dur nekevin re bişên bijîn û hevaltiyê bikin, em dê vê gavê pêngava yekemîn ya têgehiştin û sehkirina jiyanê biavêjin. Bi kurtasî gorî Gadamer, pirsgirêka û pirsa girîng ev e kû, êş jiyana hebunî de çi dibêje mirov? / **Felsefevan**

## Pirtûka 'Baxek ji folklora kurdî- Ji derdora Mêrdîn' ya Çiya Mazî derket !

Pirtûkek din li kurdî zêde bû; 'Baxek ji folklora kurdî- Ji derdora Mêrdîn'. Ev xebat li ser folklora kurdî kurmancî bûye gavek din.. Berhema folkorîk ya Çiya Mazî ya duyemîn 'Baxek Ji Folklora Kurdî- Ji derdora Mêrdîn', ji weşanxaneya Berbang'ê derketiye, 384 rûpel e û ji şeş beşan pêk tê, her beşek wekî pirtûkekê hatiye binavkirin û her beşek li ser babetek folklorê ye, wekî; Dûrikên dawet û bûkan, Destanên herêmê yên ji dengbêjan, Ferhenga biwêjan, Ferhenga peyvên absurd, Ferhenga pîşekariyê, Gotinên pêşiyan, Gotinên xweş û pêkenokên derdora Mêrdînê ne.

Ev berheviyên folklorê yên derdora Mêrdîn, Qoser û Beriya Mêrdîn, Şemrex û Metînan, Dêrik û Çiyayê Mazî, Mêrdîn û Surguciyan û yên Nisêbînê ne.

Bi dehan dûrikên bûkan yên ku tenê li derdora Şemrex û Dêrikê ji alî jinan ve tên gotin ji alî Çiya Mazî ve hatine şîrovekirin û hatiye gotin "ku ev 'dûrik' wekî derbirîna ramanê û rexneya jinan li civakê û aliyên bûk û zaveyê ne."

"Defa me defa heyatê
Def giran e bi teqla tê
Xalê bûkê ne tiştek e
Ji me dixwaze devança xelatê"

Di beşên din de jî, gelek biwêj hatine ravekirin, gellek gotinên pêşiyan, peyvên xweş û mecazî, nifir, tan û nirç (laqab) yên derdora Mêrdînê hatine rêzkirin. Pêkenokên derdora Mêrdîn yên herêma Surguciyan û Şemrexê di vê pirtûkê de cîh digirin. Di beşa Destanan de jî; destana Teyarê Qereçolî ku li nava Dimiliyên Şemrexê û Metîniyên Dêrikê navdar e, Elê Melê û Gulîzera Kurdan ku li Beriya Mêrdîn û Wêranşahirê navdar e, Zeynebê û Reşît Paşa ku li navbera Dêrsim û Meletê qewimiye wekî 3 destanên dirêj ji devê dengbêj Fadilê Kufragî hatine girtin.

Du beşên din ku balkêş in henin, Ferhenga Absurd û Ferhengokên Pîşekariyê. Di Ferhenga Absurd de peyvên kurdî-kurmancî ku bi piranî di ferhengan de cîh nagirin hatine ravekirin. Wekî: Bolvir, Tiredîn, Tiroviro, şirpînî, şirşir, pistpist, çîk, çîko, ogê, togê, malneket, kerratî, incolê, gêjomêjo. Peyvên ku hevdûdanî ne û qertaf girtine û bûne peyvine din, gelekên wan di vê ferhengokê de cîh digirin.

Di ferhengoka pîşekariyê de; peyvên di pîşeyên xanî-avahî, şivanî gavanî, paleyî cotkarî, rez û mahsereyan de tê bikaranîn wekî; sîtil, kox, kungî, matûrke, bernig, bixur, revoke, kerî, qefle, gidîş, şixre, mexel, mijane, mêlav, ber, berteng, kurîşk û bi sedan peyvên din yên li derdora Mêrdîn tên bikaranîn hatine ravekirin ji alî Çiya Mazî ve.

Wekî tê zanîn berhema Çiya Mazî bi navê 'Ferhenga Gotinên Pêşiyan' ku ji 500 rûpelî pêk dihat di sala 2005'an hatibû çapkirin. Û heman ferheng li Duhokê bi tîpên kurmanciya jêrîn jî hatibû çapkirin, herwiha berhem-ên wî yên wêjeyî jî henin.

# Bicîhbûna kurdan li Xûresanê digêje Medan

**BasNûçe /** Dîrokzan, nivîskar û muzîsyenê Xûresanî Kelimullah Tewahudî di derbarê dîrok, jiyana civakî û çanda kurdên Xûresanê de pirsên me bersivandin.

**Di dema Îmapartoriya Medyayê de Xûresan di çi rewşê de bû?**
Dewleta yekem ku li ser xaka İranê hat damezirandin İmparatorya Med ya kurdan bû. Kurdên Madano niha li Xûresanê û wilayeta Mazenderanê hîn jî dijîn. Her wiha kurdên Kawyanlo û Kêywanlo jî hene, ku ew ji dema padîşahiya Kîyanan ne. Piştre bi derbasbûna demê re kurd ji welatê xwe yê esasî koçkirin û hatin nava xaka İranê û împaratorya xwe damezrandine. Erdê wan yê eslî li derdora rêzeçiyayên Zagros heta çiyayê Demawendê bû.
Herema ku niha jê re dibêjin Azerbayacana Mezin, Mad a Mezin e û pişka dûyêm an jî Mad a Biçûk jî, ji herêma Hemedan heta bajarê Rêy e.
Navê bajarê Rêy navekî Kurmancî ye û tê wateya 'rê' an jî di Awesta de 'rêga' hatiye nivîsandin ku tê wateya 'cîhê derbasbûnê'. Vêca ji ber ku ev bajar di serê dû rêyan de bû, ku rêya hewreşîm jê derbas dibû, jê re gotine Rêy.

**Berî İslamê hatina kurdan ya Xûresanê kengê û çawa destpêkir?**
Kurdên Xûresanê ne di çend meheleyan de gihîştine Xûresanê. Beriya Îslamê jî kurd li Xûresanê hebûn.
Ji ber ku heta bi Sultan Mehmudê Xeznewî re jî kurdên Xûresanê çûne şerê Sumera, çûne Hîndistanê. Piştre dîsa leşkerê kurdan bi Sultan Mesûdê Xeznewî û Tûxrûl Begê Selçûqî re di herêma Qûçanê û herêma Nawiqê û herêmên din yên derdora Qûçanê şer kirine. Fîrdewsî jî di Şahnamê de gelek behsa kurdan kiriye. Min di pirtûka xwe de ku navê wê wek Tevgera Tarîxî yê kurd lê Xûresan danîye, ji çaxê Sefewîyan, ji desthilatdariya Şah Îsmaîl destpêkiriye.




**Hatina kurdan piştî Îslamê bo Xûresanê çawa qewimî?**
Silsile ya padişahî ya kurdan a dawîn Sasanî bûn, ku di dema hatina ola İslamê de tevî serxwebûna İranê ew jî ji dest çû. Ereb ji başûrê rojavayê İranê bi rê ketin û hatin û ketin pişka rojhilatê Xûresanê.
Ji ber ku serxwebûna İranê bi hilweşîna Sasanîyan ji dest çû, hinek qewmên tirk jî di sedsala 9an de hatin Xûresanê û silsileya Xeznewîyan pêkanîn. Paşê jî silsila Selçûqiyan pêkanîn û wê demê Tîmûrleng jî hat û di dawiyê de vana hatin gihiştin sinorê Hemedanê.
Li Hemedanê di navbera wan û kurdan de şer qewimî û kurdan îzin nedan wan ku ew bikevin nav xaka kurdistanê û ew çûn ji riya Azerbayacanê ketin nava xaka Tirkiya îro. Di sedsala 10an û 11an bi temamî desthilatdariya xwe li wir damezÎrandin.

**Derbarê Şahê navdar yên alema Şîa, Îsmaîlê Sefewî dikarî çi bêjî?**
Heta sedsala 16an Şah Îsmaîlê Sefewî ku ji malbateke kurd e û nifşê wî ji kurdên Sencarê ye, karibû careke din piştî 900 salan serxwebûna İranê bi destxe. Osmaniyan digotin em xelîfê Îslamê ne. Sefewiyan jî digotin em jî ewladên İmam Musa Kazimin.
Bi vî rengî wan ji xwe re şecereyan çêkirin û gotin 'eger hûn xelîfe ne, em jî ewladê Musa Kazim in.' Yanê Sefewîyan li hember Osmanîyan bi riya ziman, nivş û ol jî şerdikirin. Lê li gor belgeyên dîrokî ev tiştê hanê hatiye red kirin û nayê pejÎrandin. Hatiye îsbadkirin ku malbata Şah Îsmaîlê Sefewî ji kurdên Sencarê ne û ewladên Fîrozê Meşriqî Zerînkela ne.

**Rekabeta olî ya navbera Osmanî û Sefewiyan de çawa geşbû?**
Di çaxê Sultan Selîmê Osmanî de Şîiyên ku li ser erdê Osmanîyan hebûn tev hatin kuştin û Şah Îsmaîl jî li hemberî vî karî, di İranê de Suniyan kuştin.
Piştre şer û pêkdadan dest pêkirin û kurdên ku bi mezhebê xwe Şîî bûn û hîsên wan yê İranheziyê hebûn, piştgîriya Şah Îsmaîl kirin û hêz dane wî.
Lê bê ku wî hêzên xwe tekûz bike, Sultan Selîmê Osmanî êriş kir û şerê Çaldiran çêbû. Hac Rustem Begê Çemişgezek serokê kurdên Xûresanê û 40 kesên din ji serokên kurd li Çaldiranê xwestibûn ku bi Sultan Selîm re aştiyê çêkin, lê wî bi nemerdî serê tevan birî û tev ji nav birin. Piştî vê yekê kurdan bi temamî hevkariya Sefewîyan kirin, herçend berê an jî piştre bûn Şîî û ev mezheb ji xwe re pejÎrandin.

**Bicîhbûna kurdan li Xûresanê di dema nakokiya Osmanî û Sefewiyan de çawa destpêkir?**
Ozbekan Xûresan ji holê rakiribûn. Bi taybetî di dema Şah Tehmasb de Ozbekan Xûresan talan kirin. Herwiha di çaxê beriya Şah Ebbas de jî. Piştre Şah Ebbas dît ku li hemberî Ozbekan nikare li berxwede. Wî rabû 45-50 hezar malbatên kurd ji derdora rûbarê Erezê li Azerbaycanê û hinek jî ji kurdistana Tirkiyê ya niha, hinek ji kurdistana Iraqê û ji Azerbaycanê ku alîgirên İmpiratoriya Sefewî bûn û bi mezhebê xwe jî Şîa bûn, anîn li jêr Veramîn û Tehranê danîn.
Bi vî awayî duxwst pêşiyê li dagîra Ozbekan bigire. Paytexta Sefewîyan jî wê demê ji Tebrîzê hatibû Qezwînê. Niha li Tehranê cîhek bi navê Zayferanîye heye ku navê xwe ji kurdên Zaferanlo girtiye. Cihek bi navê Zayferaniye jî li Sebzwarê heye. Zayferanlû li Qûçanê jî heye.
Piştre di sala 1600î de kurd hatine Xûresanê û Ozbek qirkirin. Serekê wan Genc Elîxanê Zîgf bû ku ew yek ji fermandarên Şah Ebbasê Sefewî bû û ji Kîrmanê hatibû. Genc Elîxanê Zîgf yek ji kurdên hakimê herêmên rojhilatê İranê bû û ew hatin û kurdên Xûresanê bi serokatiya Şah Elîxanê Çemişgezek Xûresan girtin û hêzên Moxol û Ozbek ji Xûresanê derxistin û bi xwe li vê herêmê rûniştin.
Ji sala 1600î heta 1610an ew bi temamî li Xûresanê cîwarbûn.
Ji bakûrê Xûresanê heta Merw û Buxarayê û heta rûbarê Cêyhûnê ket destê kurdan.



**Em dizanin ku hûn bi mûzîkê re jî eleqedar in. Gelo çi xebatên we hene derbarê muzîkê de?**
Di derbarê muzîkê de min ji sala 1964'an min bi qasî 120 saet muzîka baş û resen tomar kiriye. Piraniya wan mamostayên ku muzîka wan min tomar kiriye ji beyin çûne û mirine. Ji bona wê jî min ji îdareya kultur û çandê çen dîplomên îftixarê standine. Di derbarê muzîkê de me kar û barên bi kêr û bêr kirine. 270 helqe fîlm heta niha min ji rewşa jiyana civakî ya kurdên Xûresanê hilanîne. 5 helqe fîlmên islayid min hilanîne û 10 helqe fîlmên vîdyoyî min ji jiyan, baxdarî, dewat, şahî û tiştên wiha yên kurdên bakurê Xûresanê hildane, bi hezaran belgeyên destxetî min li ser jiyana siyasî û civakîya kurdên Xûresanê komî serhev kirine.

Wê demê kurdên Çegenî û Çemîşgezek û kurdên Zengene ku li herêma Heratê diman, Çegenan jî ji Sebzwarê bigre heta Meşhed û Qûçan û Merw û Buxarayê belav bûn. kurdên Çemîşgezek jî ku ji Şadlû, Qereçorlû, Kawyanlû, Kêykanlû, Sêfkanlû, Bîçeranlû, Emarlû û Rodkanlû û yên din di bakûrê Xûresanê de bicîhbûn. Wê demê seroke wan Wekîl El Ekrad e. Ji van çiyayên herêma bakûrê Xûresanê re jî digotin Cîbal El Ekrad, Yanê Çiyayê kurdan.
Heta dema Nadir Şah ev herêm tev ji alî kurdan hatiye parastin. Mezhebê Şîîtiyê li vê herêmê bi zora şûrê kurdan desthilatdar bûye. Beriya ku kurd bên Xûresanê pÎraniya gelê herêmê ji mezheba Sunî bûn. kurd li vir man û çiya û sînorên herêmê parastin, heta çaxa Nadir Şahê Efşar.
Di çaxa Nadir Şah, ku dîsa Efxanan êriş anîn û Şah Sultan Husênê Sefewî ji seltenetê hat xwarê, bêbextîyên din jî rûdan.

**Di dema Nadir Şah de rewşa kurdên Xûresanê çawabû?**
Nadir Şah bi navekî din Nadir Qolî, bi eslê xwe kurd e û ji kurdên Efşar e. Ew ji herêma Dîzawend ji aliyê Deregez û Qûçanê ye. Diya wî jî ji kurdên Baçiyane. Piştre ew êsîr dikeve destê Tirkmenan û paşê xwe ji destê wan xelas dike. Wê demê serekê kurdan Şah Vêrdîxanê Şêxkanlû ku ji herêma Çinaran, Radikan heta Meşhedê di destê wî de bû, hevkariya Nadir Şah dikir û wî bilind kir. Ew di çaxekê de bû ku Şah Tehmasbê dûyêm ji paytexta İran ji İsfehanê reviya û çû Tebrêzê û ji wir jî hatibû Qezwînê û ji wir jî hat İstirabadê. Wê demê wî ji Muhsin Sultanê kurd re name nivîsî ku ew pêykê Şah Tehmasibê dûyêm bû. Şah bi destûra wî hat Xûresanê û li Qûçanê li mala Şah Vêrdîxanê Şêxvanlo xelkê kurd ji Şah Tehmasb re bîaat kir. Qûçan wê demê nawenda fermandarîya kurdan bû û ji wir leşker kêşî kirin û hatin vira û hêza artêşê ket destê Nadir Qolî.
Ew hatin Melik Mehmûdê Sîstanî ji bajarê Meşhedê derxistin û Xûresan girtin û Şah Tehmasb jî çû İsfehan girt û piştre jî Azerbaycan û deverên din tev ji destê Romê derxistin.
Di dawiyê de serxwebûna İranê bi zora şûrê Nadir Şah û kurdên Xûresanê carek din bidest ket. Nadir Şah piştre çû Hindistan û Xarzem jî tev girt û sinorê İranê gihand serdema desthilatdariya Sasanîyan.

**Li ser dema Muhamed Riza Şah hûn dikarin çi bejin?**
Piştî Qacaran jî Riza Şahê Pehlewî hat ser hukimdariyê ku Farsekî bakûrê İranê ye. Herçend gehiştina desthilatdariya Riza Şahê Pehlewî de rolê kurdên Xûresanê pir hebû, lê Riza Şah piştre vegerî kurd kuştin û serokên kurd yên mîna Serdar Muzem Bicnurdî, Setar Xanê Ehwazî, û Welîehd Xanê Qehremanlo îdam kirin, kuştin an jî ji Xûresanê dûrxistin.

**Têkiliya kurdan û rejima İslamî niha di çi rewşê de ye?**
Di dema şerê İran û Iraqê kurdan rolekî giring û dîrokî leyîstin. Bi taybetî di çaxê dorpêçkirina Abadanê de kurdan fedakariyên mezin kirin. Dema ku hîn şer didomiya ez çûm Kela Çinaranê. Tenê li wî bajarokî 24 şehîdên kurdan hebûn.
Herêma Nûqelecixê ewqas şehîd û birîndar dane ku hejmarek pir zêdeye. kurdan di şerê Iraqê de kêm êsîr dane. Ji ber ku kurd xwe teslîm nakin û tên kuştin an jî dikujin, lê teslîm nabin. PÎraniya kurdan şehîd bûne û li her derê ev rastî bi alên ku li goristanan hildane de tê dîtin. Ev nîşana yekgirtina kurdên Xûresanê bi komara İslamî re ye.
Piştî hatina komara İslamî me xebat û karên xwe yên kulturî destpêkirin û di çaxê Pehlewî de me nedikarî îdia biken ku li Xûresanê kurd hene û di derbarê kurdan de dîrokê binivîsîn. Elbet di çaxê Qaçariyan de rojhilatnas hatibûn û di vê derbarê de nivîsandibûn, li di çaxê Riza Şahê Pehlewî de tiştekî wiha tunebû.

**Nifûsa kurdan li Xûresan çiqas e?**
Di derbarê de ku çiqas kurd li Xûresanê hene, heta niha anketek çênebûye.
Di çaxê Nadir Şah de Mîrên Meşhedê kurd bûne, hemam û mizgeftên wan hebûne, lê piştre hatine helkirin û bûne fars û tirk. Dema ku Hulagû Xanê Moxol hat û İran girt frman da ku hemû navên kurdî û farsî ji holê rakin û li şûna wan navên Moxolî û tirkî danin. Wiya jî derbeyek mezin li ferhenga netewên İranê da.
Dema Şah İsmaîl jî ku bavê wî kurd û dayika wî ji tirkên Aqqoyinlû bû û wana bi zimanê kurdî jî diaxivîn, lê zimanê dayikê li ser wan pir bi tesîr bû û bi tirkî diaxivîn. Çaxê Riza Şahê Pehlewî jî xwendingeh bi zimanê farsî bûn û kurd di vê navê de pir hatine helandin û ji bona wê jî niha pir bi zehmete ku mirov bêje çiqas kurd di Xûresanê de dijîn. Di çaxê Qacarîyan de ji sedî 25 hejmara nifûsa xelkê Xûresanê kurd bûn. Niha mirov dikare bêje yek milyon û 200 hezar kurd li Xûresanê dijîn.

**Li ser rewşa niha ya kurdên Xûresanê hûn dikarin çi bejin?**
Ciwanên kurd niha pir pêş ketine. Mezintirîn navenda kombûna kurdên Xûresanê, Tehran û Meşhedê. Çend fermandarên kurd jî li Xûresanê hene û ciwanên kurd di hemû warên dersxwendinê de pir pêşketine.
Çalakîyên kurdan niha pir zêde bûne û bi giştî rewşa me başe.
Xwendevanên zankoya edebiyatê niha Govareke xwe ya bi navê Kurmancî derxistine ku pêwîstiya wan bi piştgîriya aborî û madî heye. Yanî tu karekî ferhengî bê piştgîrîya aborî naçe pêş. Ji 30 salî virve kurdên Xûresanê hinekî pêşketine û di zanîngeh û dibistanan de dest bi xwendinê kirine û çûne derveyê İranê.



**Xebat û lêkolînên we yên derbarê dîrok, huner û civaka kurdên Xûresanê de çine?**
Me çaxê Pehlewî de nikaribû binivsînin û xebata ferhengî bikin. Lê niha ne wisane. Min heta niha 30 pirtûk derheqa dîroka kurdên Xûresanê nivîsîye.
Min pirtûkeke bi navê 'Serzemîn Merdomê Xûresan' nivîsîye, ku li gor send û belgeyên Xûresanê hatiye amadekirin. Di pirtûkê de hatiye xuyakirin ku xelkê her herêmeke Xûresanê kengî û çawa hatine Xûresanê.
Di warê aboriyê de ez çûme hemû gund û bajarên Xûresanê û min heta pez û mirîşkên wan jî jimartine. Lê pirtûkên min heta niha nehatine çapkirin û îmkanên çapkirinê tunene. Wek mînak pirtûka Nadir Şah. Hemû send û dokomentên çaxê Nadir Şah min berhev kirine, lê îmkanên min yên madî tunene û ji sala 1995'an min îzna çapa wê standiye.
Heta niha ji 30 cild pirtûkên min tenê 10 hatine çapkirin. Bi hezaran dokument û belgên dest nivîs min li ser jiyana siyasî û civakîya kurdên Xûresanê komî serhev kirine. Di warê hunera dest de jî min heta niha qalî, zêr û zîv û kincên jin û mêran di nava kurdên Xûresanê de kom kirine û di her warê ku ji bo jiyana kurdên Xûresanê pêwîst be min kar û xebat kiriye.
Lê ji bo çapkirin û nasandina van tiştan îmkanên min tunene û hercar divê ez ji bo çapkirina pirtûkekê tiştekî xwe bifroşim. heta niha min gelek erde xwe firotiye, ji bankê pere stendiye û min pê pirtûkên xwe weşandine.
Yanî divê em ji saziyekî piştgîriyê bistînin ku bikarîbin karê xwe bidomînin. Ev ji bo me karekî pir zehmete û birastî êdî tiştekî min nemaye ku bifiroşim û berhemên xwe çap bikim. Lê bi her awayî cilda 6'ê ji dîroka kurdên Xûresanê û dîwana Cefer Qolî Zengilî ezê îsal çap bikim. Bi qasî 32 gotar û hevdîtinên min di govar, rojname û TV, radyoyên hundir û dervayê İranê de hatine weşan û belavkirin.



# Radyo ya dengên teze: Erîwan



AZİZ TEKİN




Di sala 1955'an de dema ku Radyoya Êrîwanê bi anonsa 'Yêrêvan xeber dide, guhdarên ezîz, naha bibîzin deng û behsên teze' dest bi weşanê kir, kesî bawer nedikir ku ji bo mûzîka kurdî wê bibe akademiyek bê ser û ber. Ji roja avabûna radyoyê vir de hê jî bi zindîbûna roja xwe ya ewil di bîra kurdan de cih digre.

Piştî ku radyoya Êrîwanê bi anonsa xwe ya ku li Kurdistanê weke pêşgotinekê niştecih bû bi dest bi wêşanê kir, êdî kar û bar û jiyana rojane li gor seata wê dihatê organîzekirin. Ji berk u Radyoya Êrîwanê ji bo kurdan bibû qonaxe hebûna wan ducar dike.

Bayê Êrîwanê mêjiyê kurda hênik dike Guherînên civakî li gor guherînên siyasî dereng dibin. Pirî caran pergela siyasetê civakê duguherîne û jê re pêşengtiyê dike. Radyoya Êrîwanê piştî biryarek siyasî hatibe vekirin jî civaka kurda ji serî hetanî binî guherand. Dema radyoya Êrîwanê di 1955'na de dest bi weşana xwe ya test kir kesî nizanibû ku wê di mêjiyê kurda de cihek evqas mûhîm bigre. Dema radyo dest bi weşanê kir li tevayê Kurdistanê bêdengiyek giran hebû. Li bakur devleta Tirkiyê bi zext û zordariyek giran dihat ser kurda. Li rojhilat Komara Mahabadê têk çûbû û hemû liv û tevger hatibûn rawestandin. Li başûr bi çûyîna Mele Mistefa Berzanî ya ber bi Sovyetê ve tevgera kurd di dema sekanê de bû. Rodyo di bêdengiyek bi vî rengî de deng veda. Di serî de heftê çar roj û rojê 15 deqe weşan dikir. Tenê di nava xaka Ermanîstanê de dihat bihîstin. Pişt re ji weşana test derket û bi rêk û pêk di mêjiyê kurdan de tehmek hevpar hîşt. Piştî çûyina Mele Mistefa Berzanî a ber bi Sovyeta ve bi daxwaz û alîkariya wî dema weşanê derket her roja heftêyê. Bi roj seet di 4'an de, bi şev di seet 9'an de dibû mêvanê malên kurdan. Wê mêvanê bi xwe re "deng û basên" xerîb lê bi zimanek ji malê tanî. Di odê de cihê wê mêvanê herî jor bû. Zû bi zû firekans li ser radyoya Êrîwanê nedihat guherandin.

**Dîroka radyoyên kurdî**
Radyoya Bexdayê, di 19-ê Kanûna sala 1939'an de, dest bi weşana kurdî dike. Di serî de tenê 15 deqeyan weşanê dike û tenê kesekî bi navê Kamil Kakemîn di wê radyoyê de dixebite. Radyoya Bexdayê li tevayî Kurdistanê dihate guhdarkirin. Radyoya Yafa (Heyfa) li Filistînê di destpêka sala 1942'an de ji aliyê dewleta İngilistanê ve, li girava Heyfayê tê damezirandin û çend rewşenbîrên kurd tê de dixebitin. Piştî ku şerê şerê cîhanê yê duyemîn bi dawî dibe weşana wê radyoyê jî tê rawestandin. Radyoya Beyrûtê di 5'ê Adara sala 1941'an de ji aliyê Dr. Kamuran Bedirxan û bi alîkariya dewleta Fransayê hat damezirandin. Ew radyo beşek ji radyoya fermî ya Lubnanê bû û di nava hefteyê de tenê du rojan û bi qasî 30 deqeyan weşan dikir. Weşana wê radyoyê heya yekê nîsana 1946'an dewam kir. Radyoya Dengê Kurdistanê di 30'ê Nîsana 1946'an de dest bi weşanê kir. Ew radyoyek navçeyî bû û tenê li bajêrê Mihabadê dihat bihîstin. Bi hilweşandina Komara Kurdistanê, weşana wê radyoyê jî hate rawestandin. Di 24'ê Hezîrana 1952'an de li Sînê ji alî Îranê ve radyoyek bi kurdî tê vekirin. Piştî bi pêşketina teknolejiyê bi dehan radyoyên kurdî tên vekirin.

Li Ermanîstanê weşanên radyoyên kurdî Di sala 1930'î de li paytexta Ermenîstanê radyoyek kurdî di bin banê dezgeyên dewletê de dest bi weşanê kir. Li gor radyoyên cîhanê di demek nâ de frekansên xwe belav kir. Nivîskar Temûrê Xelîl derbarê vî radyoyê de dibêje ku: " Ev radyoyek lokal bû tenê li Êrîwan û çend gundên dor û berê wê hatîye bihîstin. Ji ber ku satelit tunebû firekansên wî xwe nedigihand dûr." Xelîl derbarê weşana radyoyê de bi me dide zanîn ku: "Ew radyo di heftêyekê de rojek tenê û bi qasî 10 deqe weşan dikir. Di vê radyoyê de Hecîyê Cindî, xanima wî Zeyneva Îbo û hin kurdên din dixebitîn. Zeyneva Îbo di nav kurda de wek yekem bêjera jin tê qebûlkirin. Di sala 1924'an de li Kurdistana Sor jî radyoyek kurdî hebû. Lê ji ber ku li parçêyên din ên Kurdistanê vergirên radyoya tunebûn dengê radyoyê nedigîşt wan deran.

**Di radyoyê de rola jina**
Her çiqas ku wê demê di nava civakê de jin li paşbûna jî ku meriv li xebatkar û sitranbêjên radyoyê dinêre bi rehetî dibîne ku rola jinan a di radyoyê de ne hindik e. Temûrê Xelîl dibê ku "Meseleya dengbêjên jin pir zehmet bû. Birayên wan, mêrên wan, mirovên wan nedihîştin ku ew di radyoyê de bistirên."

Tevî ku rewş wihabû jî bi saya rêvebirên radyoyê dengê wan dengxweşan wek bayek qedîm hê jî di guhê me de dike pistepist. Temûrê Xelîl jî bal kişand ser vê û got, "Lê Xelîlê Çaçan wisa kir ku dengê hemûyan jî qeyd kir: hinek mirovên wî bûn, wek Zadîna Şekir, hinek bê mêr bûn, wek Sûsîka Simo, hinek pêşketî û xwendî bûn, wek Kubara Xudo û Aslîka Qadir, yên din jî bi dizî dengên wan qeyd dikirin, navên wan diguhastin, ku tu kes nizanibe ew jina kê ye, an xûşka kê ye." Ji roja ku radyo hat avakirin vir de jina Xelîlê Çaçan Eznîva Reşîd 27 salan bêjertî kir. Li gel Eznîva Reşîd hin caran Sêvaza Evdo, hin

caran jî Lusika Huseyn û Gulîzera Casim bêjertetiya radyoyê dikirin. Dengê hin dengbêj û sitranbêjên wek Aslika Qadir, Susika Simo, Xadina Şekir, Meyrem Xan, Asa Evdille, Belga Qado, Ayşe Şan, Fatma Îsa, Dîlbera Wekîl, Xana Zazê, Şibliya Çaçan, Gulîzera Etar, Werda Şemo, Cemîla Çavuş jî di nav gelî û çiyayên welatê kurda de belav bû.

**Di parastina mûzîka kurdî de rola Radyoya Êrîwanê**

Bi frekansên radyoyê deng û nameyên mûzîkjenên kurda li seranserê Kurdistanê belav dibû. Hin stranbêjên kurd yekem car di vê radyoyê de dengê xwe belavkirin. Aslika Qadir ku bi strana xwe ya navdar “Welatê Me Kurdistan e” li tevayê Kurdastanê hat naskirin. Ji van mûzîsyenan yek jî solîstê Koma Wetan Kerem Gerdenzerî ye. Gerdenzerî derbarê radyoyê de hestên xwe waha da der: “Radyoya Êrîwanê ji bo miletê me gelek baş bû, xebatkarên radyoyê xebatên gelek mezin dikirin ji bo miletê me kurda. Ez çawa dizanim emekê Xelîlê Çaçan Mûradov di Radyoya Êrîwanê de geleke pir e. Di her malê de her tim dengê mûzîk û stranên kurdî dahat.”

Gerdenzerî di derbarê albûma wan a yekem a bi navê ‘Baê Paîzê’ ku pir dixwestin ku bişînin radyoyê de jî çend gotin bi me re par ve kir. Gerdenzerî, “Me gelek dixwest ku me albûma xwe bişanda Radyoya Êrîwanê lê çênebû. Min albuma ‘Baê Paîzê’ şande radyoya Êrîwanê û sal 1986 bû. Lê albûm negihiş Êrîwanê.”
Li gor daxuyaniyên ku ji alî xebatkarê radyoyê ve hatine kirin, zêdetirî 1600 stranên kurdî niha di arşiva radyoyê de qeydkirîne û ev hemû jara yekem di radyoyê de hatine weşandin lê bele piştî vê li tu deran nehatine weşandin.

**Naveroka Radyoyê**

Bi zêdebûna dema weşanê re naveroka radyoyê jî li gor salên pêşî dewlemend bû. Bi belavbûna dengê radyoyê ji guhdarvana jî name ji navenda radyoyê re dihatin şandin. Ji bo van daxwazên guhdarvanan bernameyek teybet bi navê ‘Fikra Guhdarên Me’ hate çêkirin. Daxwaz û ramanên ku wê demê di wan nameyan de cih digirtin niha jî di arşîva radyoyê de hene. Ji ber ku pirê kurdên Êzîdî, û ermeniyên Kurdistanê li pişt xwe malbatên xwe yên belawela û wenda hiştibûn û çûbûn Ermenîstanê, ji bo van kesên wenda û malbatên wan bernameyek ‘Xerîbên Xwe Digerim’ hatibû çêkirin. Bi saya vê bernameyê hin kes digêjiyan malbatên xwe yên ku ji ber şer û kaçberiyê wenda kiribûn. Bê van bi navê ‘Serhildanên Kurda’, ‘Rojnîşa Çandê’, ‘Zimanê Teyî Dê’, ‘Pênçşema Edebiyatê’, ‘Rasthatin û Bîranîn’ bernamayên dewlemend dihatin çêkirin û helbet mûzîk.

**“Me mûzîk ji Êrîwanê guhdar dikir”**

Radyo di hişê guhdarvanên bakurê Kurdistanê de jî piranî bi mûzîka niştecî bûye. Ji guhdarvanên radyoyê yên wê demê Brusk Solduk ku wê demê li Amedê xwandekar hestên xwe yê derbarê radyoyê wiha rawa dike: “Dema 80’yî de min li radyoya Êrîwanê guhdariya mûzîka kurdî dikir. Tenê di hişê min de mûzîka wan maye”.

**Ka kî di radyoyê de tunebû?**

Egîdê Cimo bîranîna xwe yên di derbarê radyoyê de waha anîn zimên, “Sala 1955’a bû, radyoyek min hebû. Min ji vê radyoyê tim Radyoya Bexdayê guhdar dikir. Rojekê min pêla wî guherand û bi carekê re kurmancî hat guhê min. Wêşana wan wê demê tenê 15 deqe bû. Min got gere ez herim radyoyê.”

Piştî wê Cimo di beşa sazbendiyê de dest bi kar dike. Piraniya sitranbêj û sazbendan piştî bihistina denge kurdî berê xwe dane radyoyê û denge xwe qeyd kirine. Şeroyê Biro, Seîdê Şamedîn, Karapetê Xaço, Reşîdê Baso, Memê Kurdo, Efoyê Esed, Egîdê Tacir, Memoyê Silo, Şibliyê Çaçan, Egîdê Cimo, Aramê Tîgran, Silêmanê Mecîd, Şamilê Beko, Xelîlê Abdûllah, Ahmedê Mîrazî, Seyadê Şame, Davîdê Xilo, Taharê Emer, Xelîlê Evdile, Wezîrê Usiv, Şamilê Beko, Mehmedê Mûsa, Bela Qado jî di nav de, bi dehan stranbêj û şexsên ku li tevayê Kurdistanê têne naskirin di radyoyê de avayêkî cih girtine yan jî xebitî ne.

**Rewşa niha ya radyoyê**

Piştî ku Ermenîstan ji Rusy ayê veqetiya Radyoya Êrîwanê ket tengasiyek mezin. Fînansa dezgeyên kurdan li Ermenîstanê hat birîn. Ji ber nebûna aboriya radyoyê xebatkarên radyoyê û dema weşana radyoyê kêm bû. Têmûrê Xelîl li ser rewşa radyoyê ya vê hêlê jî wiha got: “Niha dewsa 9 xebatkarên berê tenê 2 kes mane. Ermenî dibêjin em nikarin alî we bikin, niha Kurdistana we çê bûye, bira ew alîkariya we bikin. Ango rewş niha ha ye: Ermenîstan nikare alîkarî bike, Kurdistan jî nake.”

Weke Xelîl jî dibêje, rewşa radyoya ku ji bo kurdan xwedî wateyeke xeyalîbû di halekî xemdar de ye. Vê gavê di radyoyê de çend xebatkar tenê mane. Ji van Keremê Seyad ji roja ku radyo ava bûye vir de bêjertî dike. Kurê Keremê Seyad Tîtalê Kerem, qîza wî Leylaya Kerem, Sîma Samend, Cemîla Celîl hê jî xebatên xwe di radyoyê de berdewam dikin. Qeydên radyoyê ku bi nirxên zêrê reşadî de ne nuha di arşîva radyoyê de ne. Xelîl derbarê arşîvên radyoyê de jî dibê ku “Arşîv di cîyê xwe da ye, kî bixweze hemû stranan kopî bike, bira pêwendîyan bi radyoyê re dêyne emê ji wan re bibe alîkar.” /**STENBOL**


Têmûrê Xelîl

# Dîroka radyoyê

Yekem car di sala 1895’an de mûcîd Guglielmo Marconi yê îtalî bi rêya bêtêlê mesaj şand. Marconi Wek mûcîdê radyoyê hat pejirandin. Her çendî hin kes bi îdiaya radyoyê wan dîtiye derketibin jî patent li ser navê Marconi ye. Piştê wê ji alî kesên din ên wek Alexander Popov, Nikolia Tesla, Olive Lodge û hwd. ve radyo hat pêşxistin. Herî pir di dema şer de girîngiya radyoyê hat fêmkirin. Bi şerê cîhanê yê duyemîn de radyo di asta xwe ya herî girîng de bû û piştî wê jî bi salan bandora wê berdewam kir.





# 'Klasîkên Kurdî' asta hosteyiya min e

Dema ku bi albûma xwe yê bi navê 'Mîro' ket piyase ya muzîkê, Nilüfer Akbal bi dengê xwe, bi tefsîra xwe û bi qabîlîyeta îcrakirina xwe ya otantîk a di warê muzîka etno de bal kişand ser xwe. Li gel rexne û şiriveyên derheqê xwe de Nilüfer Akbal bi albûma xwe ya dawî disa balê dikêşîne ser qelîte ya mûzîkê.
Nilüfer Akbal, piştî 'Miro' albûmên bi navê 'Revingî', 'Reyê', 'Sewa' û 'Herîrê' asta xwe ya muzîkal da pêş û qalîte ya xwe bi alîkariya xebatkarên hoste yên dora xwe da pêş. Di ve albûmê de bilî zarava yên kurdî du stranên bi tirkî hene. Em di derheqê albûma ku ji NAM Müzik'ê derket bi Nilüfer Akbal re axivîn.

**Piştî demekî dirêj hûn bi albûmekê nû derketin hemberî guhdara. Di warê bijartina kilaman de Hûn metodek çewa bikar tînin?**


LEYLA DENLÎ

Armanca min ev e ku ji bo hosteyan rêz û xwendina kilam û stranên di rêwaniya min ya muzîkê de li ser min rêç danîn e. Lê ev stran beşek in. Dê berdewam bike.

**Di vê albûma xwe ya nû de we konseptek çewa plan kir û ev albûm li gorî karên we yen pêş li ku tê bi cîhkirin?**

Min dixwest ku ez bi karên xwe yên pêş re xwe û muzîka xwe nû bikim. Bi 'Klasîkên Kurdî' re min hoste yê hundirê xwe derxist derve.

**Dema xwendina 'Klasîkên Kurdî' hûn enstruman û bingeha muzîkê bi dewlemendî bi kar tînin. Pêk anîna enstrûman ya pir dengî dema ku hun bi klasîkan re pêk tinin konsepta we çî ye?**

Hozan Aşik Veysel dibê 'Ez diçim tembura min dimîne li dinyayê' ev albûm piştî me jî wê bimînin û dê werin guhdarkirin. Ji lew re em dixwazin ku karê xwe baştir bikin. Di arenjeyan de ked û karên brêz Engîn Aslan û Kemal Şahir Güler neyên ji bîrkirin ez dixwazim spas bikim ji ber ku wan min fên kirin û îfade kirin.

**Li ser mijara di muzîka kurd de têbînî ya modern di rojevê de ye û di vê demê de di pîyase ya muzîkê de gelek mînak hene. Têbîniya modern xerakirinek çewa dide klasîkên kurd?**

Muzîk deryayek e. Fikra sinor ji bo muzîkê ne rast e. Ev neheqiye ku bi çavekî mesela namusê li muzîkê bê nêrîn. Dê karên tecrûbî bên kirin û saûndên modern ji bo gihiştina ciwanên nû dê bibe alîkar. Divê em peşketinên nû jî pêvekin. Ji ber vê ez erênî nêzîkî pêşketin û guhertinan dibim.

**Ev demek dirêj e ku hûn ji xeynî karê xwe yê muzîkê di rojevê de bûn. Hûn bi gelek rexne û êrîşên tûj re rû bi rû man. Lê belê hûn niha bi albûmeke nû derketin pêş guhdarvanan. Hûn hestê xwe dikarin bi me re parvebikin?**

Dema ku em li vê mijarê ji aliyê polîtîk ve binerin rexne tên fêmkirin. Lê heke mesele pêşketina muzîka kurdî be, gihiştina guhdarvana be astengî ne rast e û muzîkê bi taybetî muzîka kurdî ne rast e ku bi siyasetê bê fetisandin. Nifşê me yê ku demekê bi zordariya TC'yê rû bi rû ma ye lewre dema ku ev nifş dûçarî siyaseta xwe dibe dê hin tiştên din tîne hişê meriv. Gelo dijmin in? Dost in? Dema ku ez bi empatî dinêrim kî ku müzîka kurd bi pêş bixe ew dostê min e. Lewre ev rexne tenê dikarin meriv demoraalîze dikin lê ji alî din ev rexne lêhûrbûnê zêde dike. Mi ev derbas kirin. Müzik hebuna min e. Ez ê berdewam bikim. Ji ber ku ez kurd im. Ev kar îfedeya keseyatîya min e. Ev ne di dest û di daxwaza kesî de ye.

**Albûmén we yên berê li ser zemînek modern û cerbî bun lê niha we îmze avêt karek akûstîk. Li ser hewcedarî çewa hun ketin rê?**

Karên min yên berê saûndên cerbî û modern bûn û ev albûn bi wesf bûn. Ez bawerim ku dê qîmet a van albûma bê fênkirin. Di ciwaniya min de ev karên cûda min motîve dikin. Ev xebat min di warê teknîkî û di warê muzîkal de peş xistin. Lê niha temen gîhişt kamiliyê û ji niha pê ve bi tecrûbe û karên xwe ez amade me û armanca min ev e ku bi vî rengî ez li hemberî guhdarvanabim.

**Kilamên ku we bijartî ne bi gelemperî bi tarzên cûda hatine ravekirin, di pêvajo ya hilbijartin û ravekirina we de hun bi zehmetiyên çewa re rû bi rû man?**

Ez ravekarim û dema ku kilamên bijartî bang li deng û ruhê min bikin ez dikarim hemû cûreyan rave bikim. Ravekirina min ya zaravayên kurdî dewlemendiya min e. Nêrînê min li hemberî zaravayên kurdî wek hev e. Ji bo min kurahîya kilaman, gotin û muzîk e. Zimên û zareva ne girîng e ji ber vê yekê ez dibêjim zimanê muzîkê nîn e. Navê albûmê 'Klasîkên Kurdî' ye.


Nilüfer Akbal

**Lê di vê albûmê de kilamên tirkî hene. We vê rewşê bi 'ji hosteyan rêz' da wesfandin. Ev wesfandin ji bo we û ji bo muzîkê bi nakokî nin e?**

Ez di warê bawerîyê de ji kevneşopiya elewî têm û destpêka min ya muzikê ji wê tê. Ez dixwazim ku ev bê zanîn. Albûm bi 15 kilamên bi kurdî hatibû plankirin lê hin pisgirêkên li ser mafên nîviskariyê derketin holê ji bo vê yekê lazim bû ku em sê kilaman jê derxin lewre du kilamin ku min beste kiribû xist albûmê, 'Bana Bana' û 'Antepin Kalesî' yên Mahsunî Şerîf ku ev kilam di warê jinan de tiştan ji me re dibêjê. Girîngî ev e ku ziman çi dibêje, kîjan zimên ne girîng e. Di ve astê de meriv li vê mijarê bi çavekî muzîkal dinêre û ev kilam ji bo min wek kurdî tên xwanêkirin. Ez bawerim ku guhdarvanên min û temaşevanên min ji min fêm bikin. Gar ku hin kes ji min xeyîdîbin ez dixwazim ku ji wan kasan lêborîna xwe bixwazim û ez dixwazim ku ev kes bizanibin ku sebebên karên min hene.




Di albûma Akbal de bingeha mûzîkal ji aliyê navên weke Engin Aslan, Kemal Sahir Gürel û Onur Özçelik ve hatiye amadekirin ku hersê nav jî di kare xwe de serketî ne.